HERDEM RASTÎ

# BasNûçe

ISSN 2148-5305

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 110 19 - 24 Tîrmeh 2016 basnuce.com

**Müslüm Aslan:**

## Muzîk di yekrengiyê de asê maye



R16





**Protokola DYA-RHK'ê**

# Ber li referandûmê jî vedike

Peymana Hewlêrê ku di navbera Amerîka û RHK'ê de hat morkirin wek yekem protokola siyasî û leşkerî ya fermî ye û Amerîka bi vê peymanê re, lidarxistina referandûma serxwebûnê jî qebûl dike. Li gor şîroveyan Partiya Demokrat dixwaze beriya hilbijartinên Serokatiya Amerîkayê, li Mûsilê serkeftinek mezin bidest bixe û di hilbijartinan de biserbikevin. U ji ber vê çendê jî pêwîstiya rêvebiriya Obama bi kurdan heye. Tehran û Bexda bi endîşe li protokolê temaşe dikin.

Protokol di derbarê Operasyonê Mûsûlê de jî hûrgiliyan destnîşan dike, balê dikşîne ser çendîn xalên leşkerî û siyasî. Di çarçoveya vê peymanê de, Amerîka di têkoşîna li dijî DAIŞ'ê de û Operasyona Mûsilê de wê di warê aborî û leşkerî de rasterast alîkariyê RHK'ê bike. Bi vê mebestê mûçeya 50 hezar Pêşmerge tê dabînkirin û çekên giran jî di nav de alîkariya leşkerî tê kirin. Herwiha beşek girîng ya rêvebiriya Musilê ji kurdan re tê hiştin û Pentagon li Kurdistanê baregehên leşkerî avadike.

R02-3



**Doç. Vahap Coşkun:**

## Têkçûna darbeyê serkeftina demokrasiya kurdan û Tirkiyê ye

"Divê Erdoğan û hikûmet ji helwesta civakê û kiryaran dersekî derbixin; divê ev yek ji bo pêşkeftina demokrasiyê wekî derfetek bê bikaranîn. Ji ber ve gotora demokrasiyê, bibe bingehîna polîtîkayên AKP'ê.

R08-9

**Mesrûr Barzanî:**

## Em li cem gelê Fransayê ne



Musteşarê Encûmena Asayîşa Kurdistanê Mesrûr Barzanî derbarê êrişa DAIŞ'ê ya li bajarê Nice de hevxemiya xwe bo gelê Franseyê diyar kir û êrişa DAIŞ'ê şermezar kir. Barzanî hevsoziya xwe ya bo xelkê Franseyê anî ziman û got ew di şerê dijî DAIŞ'ê de li cem xelkê Franseyê ne.

R03

**Şeva dirêj a Tirkiyê**

## Li dijî derbeya leşkerî, berbesta sivîl!

R04-5-6

**Rojava**

## Li Menbîcê şer, li Qamişlo destûr

R10-11

# Protokola li gel DYA'yê rêya serxwebûnê vedike

**Siwar Bedirxan**

Peymana Hewlêrê ku hefteya borî di navbera Amerika û RHK'ê de hat morkirin yekem protokola siyasî û leşkerî ya fermî bû û Amerîka bi vê peymanê referandûma serxwebûnê jî qebûl dike.

Girîngtirîn hevkarê Hevpeymana Navnetewî, RHK'ê bi pêşengê Hevpeymana Navnetewî yê Amerîkayê re protokolek leşkerî û siyasî mor kir. Protokola ku di derbarê Operasyonê Mûsûlê de ye, balê dikşîne ser çendîn xalên leşkerî û siyasî. Di çarçoveya vê peymanê de, Amerîka di têkoşîna li dijî DAIŞ'ê de di Operasyona Mûsilê de wê di warê aborî û leşkerî de rasterast alîkariyê RHK'ê bike.

Nûnerê leşkerî yên Amerîkayê, di nava hefte de hatin Hewlêrê û bi Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî re hevdîtinek berfireh pêk anîn. Li gorî agahiyan, nûnerên Pentagonê bi Barzanî re di derbarê Operasyona Mûsilê de axafîne û gotine ew ji bo alîkariya RHK'ê amede ne.

Li gorî agahiyên BasNûçe'yê ji Dîwana Serokatiya RHK'ê vergirtiye, ev peyman ne tenê di warê leşkerî de, herwiha di warê siyasî de jî gelek xalan destnîşan dike.

Pispor balê dikşînin ser girîngiya peymanê û dibêjin ev îttîfak di navbera Amerika û RHK'ê de yekem protokola fermî ya siyasî û leşkerî ye. Pispor dibêjin Amerîka bi vê peymanê re, referandûma serxwebûnê jî qebûl dike. Li gor şîroveyan Partiya Demokrat bi Serokatiya Obama dixwaze beriya hilbijartinên Serokatiya Amerîkayê, li Mûsil a paytexta DAIŞ'ê serkeftinek mezin bidest bixin û di hilbijartinan de biserbikevin. U ji ber vê çendê jî pêwîstiya Demokratan bi kurdan heye.



Protokol li Hewlêrê ji aliyê Berpirsyarê Kar û Barê Ewlehiya Navnetewî ya Wezîrê Bergiriyê yê Amerîkayê Ellisa Slotkin û Wezîrê Karê Navxweyî yê Kurdistanê Kerîm Sincarî ve hat îmzêkirin. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî jî beşdarê îmzekirina civîna protokolê bû.

**Berdevkê Serokatiya RHK'ê Sabah: Protokol derbarê Operayona Mûsilê de ye**

Berdevkê Serokatiya RHK'ê Ûmîd Sabah naveroka protokolê nirxand û diyar kir ku bi vê protokolê hevkariya têkoşîna dijî terorê û stratejiya navbera RHK'ê û Hêzên Hevpeymana Navnetewî hatiye tescîlkirin û berfirehkirin.

Sabah da zanîn ku ew peyman, encama hevkariya dû salên navbera Pêşmerge û Hêzên Hevpeymanê ye. Sabah wiha got: "Di navbera Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û Wezîrê Bergîriyê yê Amerîka Ashton Carter de di Kanûna 2015'an de civînek pêk hatîbû. Dî cîvînê de biryara zêdekirina hevkariya her du aliyan û prosesa amedekerina protokolê hatibû dayîn. Di vê peymanê de şert û mercên rizgarkirina Mûsilê bi awayekî berfirehî cih girtiye."

**Berdevkê Wezareta Pêşmerge Yawer: Di warê aborî û leşkeriyê wê ji Pêşmerge bên şandin**

Berdevkê Wezareta Pêşmerge Cabbar Yawer ji BasNûçe'yê re protokolê nirxand û da zanîn ku Hêzên Hevypeymana Navnetewî, bi Pêşmerge re dî têkoşîna li dijî DAIŞ'ê de bi awayekî hemaheng tevdigere û bi protokolê re ev hemahengî wê pêşve biçe. Yawer derbarê navaroka protokolê de wiha got: "Li gor protokolê Amerîka di warê aborî û leşkeriyê de alîkariya Pêşmergeyan dike û di têkoşîna li dijî DAIŞ'ê de pengavên nû wê bên avetin. Herwiha di warê mûçeya Pêşmergeyan jî Amerîka wê alîkariya darayî bike û 15 mîlyon dolar alîkarî wê bê dayîn. Alîkariyên lojîstîk jî wê berdewan bike. Di protokolê de derbarê cinsên çekan de tu xalek tune ye."

**"Operayona Mûsilê wê di demek nêzîk de pêk bê"**

Berdevkê Wezareta Pêşmerge Yawer derbarê rizgarkirina Mûsilê de jî diyar kir ku Pêşmerge di têkoşîna li dijî DAIŞ'ê de wê bê qonaxek herî baş. Yawer di axaftina xwe de da zanîn ku di protokolê de Operasyona Mûsilê cih digre û wisa berdewam kir: "Operayonên Musilê di sala 2015'an de li Kurdistanê dest pê kir. Li Mûsilê me cihên ku kurd lê dijîn ji DAIŞ'ê rizgar kiriye. Wekî Şengal, Başîk, Zumar, Xazîr, Mexmûr, Rabîa û Deşta Nînova herêmên kurd in û me ew rizgar kirine. Ji ber ku Arteşa Iraqê nikare li Rûmadî encamek bi dest bixe, operasyonên navenda bajêr hat betalkirin. Arteşa Iraqê, di rojên dawî de leşker şandin Geyar û li Mexmûrê. Ji bo ku hemû aliyên Mûsîlê bê rizgarkirin, niha hewlek girîng didin. Ji bo ku Arteşa Iraqê bigîhêje Başûrê Mûsilê wê operayon bên lidarxistin. Em hevî dikin ku wê pêşerojê de operayonek hevkar pêk bê. Pêşmerge li rojava, rojhilat û bakurê Mûsilê hene." Yawer got ku Hêzên Navnetewî, Arteşa Iraqê û Pêşmerge di pêşerojê de ji bo Mûsilê ji destê DAIŞ'ê rizgar bikin, wê operasyonek hevpar lidar bixin. Herwiha Yawer diyar kir ku piştî rizgarkirina bajer, wê ji bo rêveberiyê îdareyek taybet bê sazkirin.

**Parlamenterê PDK'ê Mêrxelî: Peyman di berjewendiya gel de ye**

Parlementerê Partiya Demokrata Kurdistanê (PDK) Aras Hiso Mêrxelî, derbarê protokala leşkerî de agahî dan BasHaberê û diyar kir ku wê ev protokol bibe qonaxeke siyasî. Mêrxelî, peyman ji bo têkîliyên RHK'ê û Amerîkayê weke pêngavekî girîng nirxand û da zanîn ku ev peyman, di herêmê de ewlehiya RHK'ê digre bin garantiyê û wê Pêşmerge bi çekên giran gelê kurd biparêzin. Li gorî Mêrxelî, li peymanê zêdetir xalên leşkerî hene û wiha berdewam kir: "Helbet aliyên siyasî yên protokolê jî heye û piştî vê peymanê qeyrana RHK'ê jî wê kêmtir bibe. Mûçeya Pêşmerge jî wê bên dayîn. Destêwerdana siyasî ya li dijî RHK'ê jî wê bi dawî bibe."

Peymana Hewlêrê ku di navbera Amerika û RHK'ê de hat morkirin wek yekem protokola siyasî û leşkerî ya fermî ye û Amerîka bi vê peymanê re, encamên referandûma serxwebûnê jî qebûl dike. Li gor şîroveyan Partiya Demokrat dixwaze beriya hilbijartinên Serokatiyê, li Mûsilê serkeftinek mezin bidest bixe û di hilbijartinan de biserbikevin. U ji ber vê çendê jî pêwîstiya wan bi kurdan heye.

Mêrxelî bal kişand ser bandora protokolê ya li ser referandûma serxwebûnê û ragihand ku dibe ku hin dewletên herêmê, li ber referandûma serxwebûnê û daxwaza gelên Kurdistanê rabin. Tirkiyê, Îran, Sûriyê û Iraq, serxwebûna Kurdistanê qebûl nekin. Vê peymanê wê pêşeroja gelê me bigre bin garantiyê. Mêrxelî bal kişand ser têkîliyên Hewlêr û Bexdayê û da zanîn ku parlamenterên kurd yên Meclîsa Iraqê ji ber teqînên Bexdayê û nebûna ewlehiyê vegeriyane welat. Li Bexdayê hikûmet û deshilatdar nemaye û heta ku Bexda pirsgîrekên xwe çareser neke, wê Hewlêr bi Bexdayê re nekeve têkîliyê.

**Dr. Osman: Amerîka ne li dijî serxwebûnê ye**

Siyasetmedarê kurd Dr. Mehmûd Osman, derbarê protokolê de ji BasNûçe'yê axifî û balê kişand ser bandora vê ya li ser RHK'ê. Li gorî Dr. Osman ev peyman gelek girîng e û li herêmê, destnîşaniya girîngiya RHK'ê dike. Li gorî Osman, wê Pêşmerge bibe xwediyê çekên giran û heger erîşek li dijî RHK'ê bê kirin, wê bi rehetî bikaribe parastinê bike. Osman, derbarê bandora protokolê ya li ser referandumê jî got, 'ev peyman nîşaniya helwesta Amerîka ya li hemberî referanduma serxwebûna Kurdistanê jî eşkere dike: "Amerîka, hîn jî ji serxwebûnê re negotiye 'na'. Amerîka dikare di warê siyasetê jî de bi Kurdistanê re bibe mitefîq û divê referadûma serxwebûnê jî bê çêkirin."

Osman bal kişand ser nakokiyên partiyên siyasî û ragihand û wiha axifî: "Divê partiyên siyasî di nav diyalogê de bin û ji bo bidawîkirina qeyranê, divê li hev kom bin. Hewceyê partiyên kurd ji bo berjenwendiya kurdan lihev bên û heta vê qeyrana ber bi zêdebûnê ve neçûye, pêwîst e pirsgirêkên xwe çareser bikin."

**Prof. Neqşîbendî: Ev peyman nasandina serweriya Kurdistanê ye**

Pisporê beşa Peywendiyên Navnetewî yê Zanîngeha Selahaddînê Prof. Dr. Mehmûd Azad Nakşibendî jî protokolê ji BasNûçe'yê nirxand û da zanîn ku Amerîka bi vê peymanê, RHK'ê weke dewleteke serwerî dibîne. Herwiha Neqşîbendî ragihand ku ev ne tenê peymanek leşkerî ye, aliye wê yê siyasî jî heye û di navbera Amerîka û RHK'ê de bêyî peymanên leşkerî, peymanên siyasî jî wê bên çêkirin. Neqşîbendî peymanê di warê siyasî de dinirxîne: "Amerîka bi RHK'ê re dîplomasiyek cûda dimêşîne. Ew Kurdistanê wekî dewletek cûda dibîne. Li têkîliyên her du welatan binêrin. Amerîka, di têkîliyên leşkerî, siyasî û dîplomatîk de girîngiyek cûda dide Kurdistanê. Ev peyman gelek girîng û wê Kurdistanê li herêmê pêşbixe û kurd wê bi vê peymanê serxwebûnê jî bi dest bixin."

Neqşîbendî diyar ki ku hewceyê partiyên siyasi yên RHK'ê, ji bo aştî û çareserkirina pirsgirekan lihev bên û protokol di siyaseta kurd de pengavek serkeftinê ye. Herwiha divê partiyên siyasî xwedî li vê protokolê derkevin û berjewendiyê kurdan biparizin.

**Rojnameger Etroşî: Peyendiyên Amerîka û RHK'ê ber bi qonaxeke din ve**

Rojnameger Emîr Etroşî jî di derbarê protokolê de da zanîn ku piştî rejîma Saddam, Amerîka û HRK'ê, di warên siyasî û leşkerî de bûne mitefiqê hevûdû û bi erîşên DAIŞ'ê li dijî Iraq û Kurdistanê re têkîliyên her du aliyan pêşve çûye. Etroşî diyar kir ku Serokê RHK'ê Barzanî di têkoşîna li dijî DAIŞ'ê de xwediyê rolekî gelek girîng e û ji bilî Amerîka gelek welat û hêzên navnetewî jî bi Kurdistanê re ketine têkîliyan. Etroşî wiha got: "Pêşmerge û Amerîka, bi têkoşîna li dij DAIŞ'ê li Iraq û Kurdistanê ezmûnek gelek girîng dane û bi alîkariyê Amerîka re Pêşmerge li hemberê DAIŞ'ê serkeftinên girîng bi dest xistiye. DAIŞ ji Kurdistanê hat derxistin. Di imzekirina vê peymanê de rola Serok Barzanî gelek mezin e. Barzanî, bi dîplomasiyek baş li Kurdistanê berjewendiyên kurdan parastiye."

Emîr Etroşî derbarê Operasyona Musilê jî da zanîn ku Obama dixwaze ev operasyon beriya hilbijartinên Amerîkayê bi dawî bibe û wiha pêve çû: "Hilbijartinên Serokatiyê Amerîka di 2016'ên payîze de wê bê çêkirin. Ji ber ku Obama dixwaze berî hilbijartinan ev operasyon bê lidarxistin, dest bi amadekariyan kiriye. Li gorî min di demek nêzîk de wê operasyon bê lidarxistin."

## Şande ya Pentagonê li Hewlêrê ye

Trafîka dîplomasiyê ya li Hewlêrê vê hefteyê jî berdewam kir. Serokê HRK'ê Mesûd Barzanî pêşwaziya şandekî amerîkî kir. Di şandê de; Fermandeyê Navendî ya Hêzên Amerîkayê General Joseph Votel û şandekî li gel kir ku ji Stuart Jones Balyozê Amerîka li Iraqê û Ken Gross Konsolê Giştî yê Hewlêrê û Fermandeyê Hêzên Hevpeymanan li Iraqê General Sean Barry MacFarland û hejmarek efser û şêwirmendên Pentagonê cih girtin.

Di civînê de encamên serdana Wezîrê Berevaniyê Amerîkayê û protokola leşkerî ya navbera Hewlêr û Washingtonê hat nirxandin.

Barzanî ji bo piştevaniyê sipasiya Amerîka kir, ji bo îmzakirina peymana hevdû têgihîştina hevbeş li gel Kurdistanê û ragihand û got "ev hengav cihê dilxweşiya xelk û hêzên Pêşmergeyên Kurdistanê ye." Barzanî balê kişand ser ewlekariya Kurdistanê û şerê dijî DAIŞ'ê û got ew amade nê bi hemahengî, li gel hêzên Iraqê û Hêzên Hevpeymanan karên hevbeş bikin.

**Barzanî û Ashton Carter axivîn**

Li gor daxuyaniya malpera fermî ya Serokatiya RHK'ê, Wezîrê Parastina Amerîkayê Ashton Carter û Mesûd Barzanî bi rêya telefonê bi hev re axivîne.

Barzanî û Carter guhertinên meydanî yên şerê li dijî DAIŞ'ê, hevrêziya navbera Pêşmerge, hêzên hevpeyman û hêzên Iraqê di şerê li dijî DAIŞ'ê de nirxandine. Herwiha Barzanî û Carter derbarê alîkariyên Amerîka bo Pêşmerge ya Kurdistanê jî gotûbêj kirin. Wezîrê Parastina Amerîka tekezî li ser berdewamî û pabendbûna welatê xwe bo alîkariya Pêşmergên Kurdistanê kir û kêfxweşiya xwe li hember hevrêzî û hevkariya di navbera Hêza Pêşmerge û Hêzên Iraqê de nîşandaye.

**Barzanî pêşwaziya Wezîrê Berevaniya Kanadayê kir**

Mesûd Barzanî li Selahedînê pêşwaziya Wezîrê Berevaniya Kanadayê Harjit Singh Sajjan û şanda pê re jî kir. Di hevdîtinê de ku bi amadebûna hejmarek ji berpirsên serbazî û siyasî yên Herêma Kurdistanê birêveçû, Wezîrê Kanada ji bo vê hemahengî û karê hevbeşa Hêzên Pêşmerge li gel hêzên welatên din encam dane spasiya Barzanî kir û ragihand bi sedema qurbanîdana Pêşmerge û hewla hevpeymanan û serkirdayetiya Mesûd Barzanî pêşketineke gelek baş di şerê li dij DAIŞ'ê de pêkhatiye. Sajjan pesnê çand û kultura civaka Kurdistanê jî kir ku penageheke ji bo ol û bîr û rayên cûda û got DAIŞ nikare li civakeke vekirî ya weke Kurdistanê bandor bike.

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî jî spasiya helwest û piştevaniya gel û Hikûmeta Kanadayê kir û balê kişand ser çanda kevnare ya gelê Kurdistanê ku parêzerê ol û netewên cûda ye. Barzanî got tu demekî cûdahiya olî li Kurdistanê hasasiyetê li nav xelkê de dirust nekiriye û her eve jî rêgir e li ber wê yekê ku teror û hizrên tundrew li nav Kurdistanê cih bigire. Barzanî bot pêwîst e li qonaxa piştî DAIŞ'ê çareseriyeke siyasî û civakî ya guncaw jî hebê bo ku jiyan û bexteweriya pêkhatên netewî û olî li parêzgeha Nînowa bê mîsogerkirin û êdî karesat dûbare nebin.

## Mesrûr Barzanî: Em li cem gelê Fransayê ne



Musteşarê Encûmena Asayîşa Kurdistanê Mesrûr Barzanî derbarê êrişa DAİŞ'ê ya li bajarê Nice de hevxemiya xwe bo gelê Franseyê diyar kir û êrîşa DAIŞ'ê şermezar kir. Mesrûr Barzanî li ser pêgeha xwe ya li Twitterê derbarê êrişa li bajarê Nice a li Franseyê peyamek belav kir û hevsoziya xwe ya bo xelkê Franseyê anî ziman û got ew di şerê dijî DAIŞ'ê de li cem xelkê Franseyê ne.

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî bi nameyekî ku ji Serokkomarê Fransa Hollande re şand, bi tundî êrişa DAIŞ'ê ya bajarê Nice yê Fransa şermezar kir û hevxemiya xwe ji go gelê Fransa nîşan da.

Di êrişê Nice de di dema pîrozbahiyên şoreşa Fransa de xwekujekî DAİŞ'î kamyon ajotibû ser girseya gel û 84 kesî kuştibû û bi dehan kes brîndar kiribû. Di van kesên ku jiyana xwe lidest dabûn keçeke kurd bi navê Şîlan A. jî hebû ku ji Berlin a Almanya çûbû bajarê Nice.

**Şeva dirêj a Tirkiyê**

# Li dijî derbeya leşkerî, berbesta sivîl!



**Dilan Almaz- Ahmet Özyeter - M. Emin Kan - Kerem Ari – Yeter Polat**

Tirkiye ya ku di dîroka xwe ya siyasî de leqayî bi dehan raperîn û 4 derbeyên leşkerî hatiye û encamên wan bi salan dewam kirine, di 15'ê Tîrmeha 2016'an şeva herî dirêj û tarî jiya. Şeva 15'ê Tîrmehê saet derdora 22.00'an hewldana derbeyê ya komeke leşkerên tirk bi girtina pirên Boğaziçi û Fatih Sultan Mehmet destpêkir. Paşê balafirên şer yên derbekaran ku ji Diyarbekir rabûn tevî çendî helîkopteran Navenda Asayîşê, MİT, Navenda Hêzên Taybet, Parlamento û Qesra Serokkomariyê bombebaran kirin. Pevçûnan bi saetan dom kir. Li Stenbolê balafirgehên Atatürk û ya Sabîhayê ji aliyê leşkeran ve bi tankan ve hat dagirkirin.

Tîmên taybet yên derbekaran tevî 4 helîkopteran ve bi ser otela ku Serokkomar Recep Tayyip Erdoğan a li Marmarîsê de girtin, Biryargeha Serfermandariyê kontrolkirin, Serfermandar jî di nav de hemû Fermandarên pilebilind rehîn girtin.

Darbekaran kanala TRT'ê jî bidestxistin û daxuyaniya derbeyê bi darê zorê dan xwendin. Herwiha ketin Rojnameya Hürriyetê, CNN Türk, Türk Telekom, Avahiya AKP'ê û cihên din ên stratejîk. Di pevçûnên ku heta sibehê de domkirin 232 kes mirin, zêdetirî 1500 kes jî birîndar bûn.

Gelê ku piştî sekna biryardar ya Serokkomar Erdoğan, Serokwezîr Yıldırım, rayedarên hikûmetê û AKP'ê û partiyên opozîsyonê, daket kolanan, derket ser tankan û bi çêkirina barîkatan hewldana derbeyê asteng kirin. Piştî banga Erdoğan a berxwedanê, li mizgeftan heta sibehê sela û dia hatin xwendin û li seranserê Tirkiyê piraniya wan alîgirên AKP'ê bi milyonan mirov daketin qadan û li dijî derbeyê xwepêşandan lidar xistin.

Yekîneyên artêşê yên din ku piştî hewldanê li rewşê nêrîn, piştgirî nedan û hewldana derbeyê têk çû, bi ser neket û derbekaran jî an xwe radest kirin an jî hatin girtin.

**Bîlançoya derbeyê: 232 kuştî, 1541 birîndar, 7543 desteserkirî**

Di encama pevçûnên ku di hewldana derbeyê de rû dan de, 24 jê leşkerên derbekar, 232 kes mirin, hezar û 542 kes birîndar bûn, 2 hezar û 137 jê leşker 7 hezar û 543 kes jî hatin desteserkirin.

Di hewldana derbeyê de Orgeneral Adem Huduti, endamê Şûraya Leşkerî Orgeneral Akın Öztürk jî di nav de 118 general, amîral û gelek serbazên ji rutbên cuda û pilebilind, bi tevahî 2 hezar û 137 leşker hatin girtin. 29 albay û 5 general ji peywîrê hatin dûrxistin. Herwiha li gor agahiyan di nav de 30 jê walî, nêzîkî 30 hezar kesên xebatkarên kamûyê ji peywîrê hatine dûrxistin. Wezareta Perwerdeyê lîsansa 21 hezar mamosteyî betal kir. Di vê navberê de ji 1577 dekanên fakulteyan îstîfaya wan hat xwestin.

Piştî hewldana derbeyê pêla desteserkirin û ji kar dûrxistinê li seranserê Tirkiyê berdewam dike. Di daxuyaniya ku ji aliyê Lişneya Giştî ya HSYK'ê ve hat dayîn de hat ragihandin ku bi biryara Dozgera Komarî ya Enqerê, endamtiya 5 endamên HSYK'ê hat betalkirin. Bi biryara Daireya Duyem a HSYK'ê 541 di pileya yekem ya daraza îdarî de, 2 hezar û 204 di pileya yekem ya daraza edlî de bi tevahî 2 hezar û 745 dadger û dozger ji peywîrê hatin dûrxistin. Di Şûraya Dewletê de jî 48 dadger û dozger ji peywîrê hatin dûrxistin.

**Ji ekranan bangên berxwedanê**

Hewldana derbeyê ya ku komeke leşkerên di nava Artêşa Tirkiyê de şeva 15'ê Tîrmehê pêk anîn de, ne tenê li Tirkiyê di dîroka cîhanê de bi dîmenên ecêbmayî li pey xwe hiştin. Hewldana derbeyê ku derket holê li derveyî hiyerarşî û fermandariya artêşê de hatiye plankirin û bi saetan di weşanên zindî de hat temaşekirin, bi awayekî hemwext bû cihê şerê medyayê jî. Di dema derbeyê dom dikir de, daxuyaniya yekem ji Serokwezîr Binali Yıldırımê ku bi rêya telefonê CNN Türk û NTV di nav de beşdarî weşanên televîzyonan bû hat. Yıldırım got, "Ev serîhildanek e, ne derbe ye. Yên ku ev pêk anîn wê berdelê herî giran bidin." Piştî Yıldırım, çendîn wezîr jî li dû hevdû bi rêya telefonê xwe gihandin kanalan. Rayedarên hikûmetê ji bo xwedîderketina demokrasiyê banga daketina kolanan li gel kirin.

Serokkomarê Tirkiyê Recep Tayyip Erdoğan jî bi riya telefonê beşdarî weşana zindî bû û bang li gel kir ku dakevin qadan. Erdoğan destnîşan kir ku hewldana derbeyê ji aliyê cûntayeke biçûk ku girêdayî dewleta paralel e (Cemaata Fethulahiyan) ve hatiye organîzekirin û diyar kir ku ewê jî dakeve qadan û hat Stenbolê. Piştî banga Serokkomar û helwesta opozîsyonê ya ji bo demokrasiyê li Stenbol, Enqere, Îzmîr, Samsûn û bajarên din xelk daketin qadan û liv û tevgerê destpê kir.

Ji mizgeftên Tirkiyê cara yekem li dijî derbeyê, bangên derketina kolanan û berxwedanê li dijî derbekaran hatin kirin. Mela û muezînan heta berbangê sibehê sela û dia xwendin û bangî gel kirin ku li dijî derbeyê dakevin kolanan.






**Kurd li dijî derbeyê derketin**

Balkêş bû piştî ragehdandina hewldana derbeyê li bajarên Kurdistanê yên wek; Amed, Elezîz, Mûş, Riha, Sêrt, Çewlîg, Agirî, Qers, Erzirom, Îdir, Meletî, Mêrdîn, Şirnex, Wan, Colemêrg, Bêdlîs, Dîlok û Kilîsê bi sed hezaran mirov derketin qada û ji derbeyê re gotin na. Alîgirên HDP'ê herçend bi girseyî tevlî xwepîşenderan nebûn jî, bi giştî oldar, alîgirên AKP'ê û girseyên welatparêz yên dervayî HDP'ê li hin deveran tevî ala Kurdistanê li dijî derbekaran meşiyan. PKK'ê jî bi bêdengî li bûyeran temaşe kir û di herdû rojên pêşîn de çalakiyên xwe rawestand. Rayedarên hikûmetê yekser derbarê rewşa Serokê PKK'ê Öcalan da agahî dan HDP'ê û gotin di rewşa wî de guherînek nîne.

**Darbekar hatin lînçkirin**

Li Tirkiye ya ku artêş weke "ocaxa pîroz" tê zanîn û her fermendarek pilebilind yê artêşê di qada xwe de weke "împarator" tên qebûlkirin û di bin parêzbendiya yasayan de ne, li derveyî gel li cihên elît dijîn û xwedî îmtiyazên ciddî ne, raboriya Tirkiyê de gelek caran derbe û hewldanên derbeyê kirine. Dema wan xwest siyasetmedaran rahiştin kûmên xwe û çûne malên xwe. Di rewşên awarte de ku gelek sûç û pêkanînên derveyî qanûnan kirin jî ji aliyê yasayan ve hatin parastin. Xwedî daraz û dadgehên taybet bûn. Ji damezrîna komarê heta sala 1988'an posta Serokkomariyê yê leşkerên xeneşînî bû. Leşkerên di demên ku bi awayekî fîîlî ne li ser desthilatê bin jî, welat li jêr sîbera wan dihat birêvebirin, bi hişyariyên xwe hikûmet ji peywîrê xistin, serokwezîr û wezîran tayîn dikirin. Ji biryar û kiryarên wan guman nînbû û kesê nikaribû derbarê wan de qise bikira. Ew leşker, artêş û 'ocaxa pîroz' di hewldana derbeya 15'ê Tîrmehê ji van hemû îmtîyaz û îmajên xwe bû û hetikî.

Sibeha ku 15'ê Tîrmehê bi 16'ê Tîrmehê ve girê da de tiştekî ku Tirkiye cara yekem rast lê hat, ew bû ku leşkerên derbekar xwe di nav fedî û poşmanî û hetkê de xwe radestî gel kirin.

Di dema bûyeran de gelek leşker ji aliyê gel ve hatin lînçkirin, hatin derbkirin, generalên hatibûn desteserkirin li hember kamerayan rastî lêdanê hatin, dîmenên wan yên ku rûyê wan di nava birîn û xwînê de bû ji hêla raya giştî ve hatin dîtin. Leşkerên derbekar hatin tazîkirin, unîformayên wan ji laşê wan hat derxistin, rastî lêdanê hatin û bi komî hatin desteserkirin. Serbazên derbekar li pêşberî kamerayan rastî heqaret û mûamelên şermîn hatin. Gelek baregehên leşkerî ji hêla xelk û polîsan ve hatin dagirkirin.

Komeke serbazên derbekar bi helîkopterê xwe spartin Yûnanîstnê. Hat ragihandin ku hejmareke mezin leşkerên derbekar reviyane nav daristanan û fîrar kirine. Pispor û şarezayên ku ev geşedan nirxandin, dibêjin 'li Tirkiyê li dijî mîlîtarîzmê şoreşeke ji rastiyê wê de pêk hat.'

Hewldana derbeya 15'ê Tîrmihê ku tevî dijderketina xelkê ji rîtûelên derbeyên berê derket, ji hemû cîhanê olan da. Piştî hewldana derbeya têkçûyî pêla desteserkirin û girtinê û pîrozbahî û xwepêşandanên alîgirên AKP'ê bû sedema pirsên nû û pisporan 'guhertina rejîmê' dîsa anîn rojevê. Akademîsyen, saziyên sivîl û siyasetmedaran hewldana derbeya ku encamên giran bi xwe re anî, ji BasNûçe'yê re nirxandin.

**Parlementeran hewla derbeyê çawa nirxandin?**

Parlementerên AKP'ê Orhan Miroğlu: Ji bo demokrasiya Tirkiye, demek dîrokî bû

Vê hewladana derbeyê ji gel bersivek mezin girt. Deshilatdara siyasî, gelek baş li hemberê vê sekinî û Serokkomar çawa derbarê vê de agahdar bû, bangawazîya gel kir û bi vê riyê bûyere xist bint qontrolê. Herwiha çapemeni jî gelek bi helwestek demokratîk tevgeriyan. Ez bawer dikim ki 15 Tîrmehê ne tenê ji bo demokrasiya Tirkiyê, ji bo demokrasiya cîhanê rojek dîrokî ye. Wana nedizanîbûn ku dê parlemento bê parastin. Vê şevê 9 car êrîşê li me hat kirin. Heger bombaya yekemîn li ser lijneya gihîştiyê bitêqiyabiya, dê bobelatek mezin pêk bihatabûya. Ez guman dikim ku hin hevalên me dê jiyana xwe ji dest bidana. Hevalên me yên ku li parlemtoyê hebûn gotin: 'Ya demokrasî yan jî mirin.' Tu pirsgirekek dê dernekeve. Hewldanên derbeyê di çarçoveya hiqûq û siyaset de dê bên teswîyêkirin û dê bên cezakirin. Têkîliyên siyaseta sivîl û arteşê ji bo Tirkiyê û civakê di qonaxek xeterê de ye. Ji ber ve di 15 Tîrmehê de demokrasî û siyaseta sivîl serkeftinek girîng destpê kirin.

**Parlementerê AKP'ê Mehmet Metiner: Armanc Erdoğan bû**

Vê derbeya, ji aliyê rexistina terorê Fetullah Gûlen ve hatiye kirin. Vê derbeya li dijî pêşengiya Erdoğan û hikûmeta AKP'ê ve hatiye çêkirin. Li gorî min di dîroka demokrasiyê de yekemîn carê tiştek wisa pêk hatiye. Di dîroka cîhanê de yekemîn carê gel li dijî pêkhenêrên derbeyan disekine. Ji ber vê ev gelek girîng e. Bi ancamên xwe re serkeftinek mezin e ji siyaseya Tirkiyê re. Ji vê pêş ve êdî serdemên derbeya xelas bûye. Êdî kes, fikra derbeye dê nine bîra xwe. Vê kiryara li dijî Serokkomarê me yê ku ji sedî 52 bi dengê gel ve hatiye hilbijartin, hatiye kirin. Li vê derê FETO dixwaze vê peymanê bide ku ji ber ku parlemento li hemberê kiryara derketiye û Beştepe jî bûye xaniyê gel, hatiye amanc kirin. Amanca wan bi tenê Serokkomar bû. Heger Serokkomar bi vî awayî ji holê bihata rakirin, gel wisa dernediketin kolanan û derbe jî serdiket. Ji ber ku Serokkomar, serokê sererkaniyê û mûdire ewlehiyê, bi şiklekî qewî li hemberê vê sekînin, derbe biserneket.

**Parlementerê AKP'ê Yasin Aktay: Kesên ku piştevaniya Pensilvanyayê kirine jî di karî de ne**

Dixwastin welat bi dest bixin, erka Serokkomarî bi dawî bikin ê ku piştevaniya wî mirovê Pensîlvanyayê dike, kî li paş wî de ye û kî bi alîkariya xwe piştevaniya wî dike, helbet ew jî di nava van bernameye de ne. Ez dikarim wê bi rehetî bibêjim ku dema ku parlementer di parlamentoyê de kom bûn, li hemberê kiryarên wan sekînin, bi hêrsa xwe re dîn bûn û bi vê hêrsê re nedizanibûn çi bikin. Yanî di rewşek asayî de bîra kesî bombekirina parlamentoyê naye. Heta di şer de jî tiştekî wida naye kirin. Li vê derê hesap û planek tune ye. Bi hêrsek hatiye kirin. Gelên Tirkiyê bi vê bûyerê zêdetir nêzîkê hev du bûnin. Di çarçoveya hiqûqî de teswîye kirina wan hatiye qonaxek fermî.

**Parlementerê HDP'ê Adem Geveri: Hikûmet bi devek nîvco sipasiya HDP'ê kir**

Ev derbe bû an êrîşêk taybet bû an jî direw bû? Niha kes nizane û ne mimkûne mirov tîştekî bibêje. Ez dikarim tenê vê bibêjim ku vê bûyerê aloziyê ji bûyerên Rojhilata Navînê ne cûda ye. Li Rojhilata Navînê wekî têkoşîna di nav rexistinan, teror û hêzên dewletê de pêk tê, di 15 mehê de artêş, polîs, MİT'ê pevçînin û heta arteş di nav xwe de pevçînin. Hewldana derbeye hem ji bo Tirkiyê û hem jî ji bo tevgera kurd xeterek mezin e. Em wekî partiyê, alîgîrên sîyaseta sivîl û demokrasiya piraniyê ne. Em rûdanên wisayê bi awayek xemgînî dişopînin. Hikûmet, hemû partiyên ku derbeyê şerm kirin, spasî yên xwe kirin. Lêbelê bi devekî xwar û ji partiyên din vê cûda spas kirin. Heger em bibêjin bi vê rûdanê têkîliyên HDP'ê û hîkûmetê dê baş bibe, bi tevahî nerast e. Lê heger hikûmet ji vê dersek derxe û demokratîk tevbigere, em jî li gorî vê dê tevbigerin.

**Parlamenterê HDP'ê İmam Taşçıer: Haya artêşê ji derbeyê hebû**

Darbe girişiminden, emir komuta zincirinin haberi vardı. Lê belê hin hêzan dev ji mûdaxalê bûyene berdan û lê di dema dawiyê de biryara mûdaxalêkirine dan. Heger ev hewldan serbiketa, piştî Erdoğan li ser Kurdan zextê dê zêde bikibûna. Dema ku navên fermandarên k udi lîsteyê de hene, em dinêrin; hemû jî li Kurdistanê komkûjî pêk anîne. Niha êrîş li Kurdan tê kiri. Heger derbe serbiketa, dê vê zêdetir bibya. Erdoğan hêzek baş bi dest xist û vê hêzê jî gel da wî. Heger vê ji bo çareserkirina pirsgireka Kurdan bi kar neyne, di pêşerojê de rejîmek dîkdator û faşîst derkeve li hemberê me. Heger Erdoğan vê hêzê ji bo demokrasiyê bi kar bîne, alîgira Kurdan jî bi dest bixe.

Berdevk û Parlamenterê HDP'ê Ayhan Bilgen: Sozên ji derbekaran re hatibû dayîn nehatin bi cih anîn

Ez bawer dikim ku li holê tabloyek wisa heye. Wisa diyar e hewldana derbeyê hat fêmkirin û li dijî wê hewldanê kar hatkirin. Ez vê yekê weke komployê bê bingeh nabêjim. Lêbelê tê zanîn ku bergirî û amadekarî ji bo wê yekê jî hatibûn kirin. Li aliyên din jî ez di wê baweriyê de me ku ew sozên ku ji derbekaran re hatibûn dayîn nehatin bi cihanînin. Ji ber wê yekê ez dikarim bêjim hêviyên wan şiketine. Ew kesên ku cesareta dane wan jî li gel hikûmetê man. Ez behsa navendên wan ê ewlekariyê dikim. Di nava tevgera leşkerî de amadekariyên ji bo derbeyê gelekî zû destpêkirine. Lê wisa xwiya diken ku ew piştevanî kêm bûye.

**Parlementerê CHP'ê Levent Gök: Ew ê AKP demokrattir tevbigere**

Ez wisa difikirim ku tiliya Cemaatê di vî karî de heye. Hewldana derbeyê dan lêbelê serkeftî nebûn. Piştî 15'ê ew ê tu tişt nebe weke berê. Muhalefetê li dijî derbeyê piştgiriyeke dîrokî nîşan da. Piştî vê saetê ew ê Erdoğan û AKP nebin weke berê. Li vir bereksê vê yekê jî mimkûne. Ew îhtîmale heye bibin antîdemkrat lêbelê ez wisa nafikirim. Divê hemû kes rûnê û bifikire. Ev hewldana derbeyê çima çêbû? Çima li Tirkiyê dîmenên bi vî rengî pêk hatin? Divê hemû kes li xwe bifikire, bersivê wan bigere û bersivê bide van pirsan.

## Partiyên kurd derbarê derbeyê de çi gotin?

**Serokê PAK'ê Mustafa Özçelik: Ji bo demokrasiyê ev berteka gel girîng e**

Eger ev derbe pêk bihata, diyar e ku ji derbeyên cihêtir tiştek bi xwe re nedianî. Lê xuya ye ku ev hewldan ya komeke din ava artêşê de ye. Kiryarên desthilata heyî li ser esasê înkarkirina kurd û Kurdistanê ye û her ku diçe êrişkar dibe. Êş û kulên ku derbeyên leşkerî anîne serê xelkê me hêj di nîşan de ye. Helbet dema em ji derbeya leşkerî re dibêjin na, ji derbeya sivîl ya berfireh re jî dibêjin na. Divê gelê Kurdistanê û hêzên azadî û demokrasiyê yên Tirkiyê li hember êrişên nû û senaryoyên ku doza me ya azadiyê tasfîye bike, hişyar bin. Divê îro xelk û hêzên Kurdistanê yên siyasî û sivîl li hember hemû derbeyên leşkerî û sivîl di derdora bernameyeke demokratîk kom bibin û mil bidin hev.

**Serokê KDP-T'ê M. Emin Kardaş: Darbe pêk bihata rewş wê xerabtir bûya**

Ez weke siyasetmedarek ji saetên ewil û vir ve li dijî vê yekê me û ev rewş nayê qebûlkirin. Encamê de derbe ji ku bê, çawa bê û kî bike li hember hikûmeteke hilbijartî serîhildan e. Ev nayê qebûlkirin. Wek derbeyên 27 Gulanê, 12 Îlonê û muxtiraya 12'ê Adarê, dibe ku ji wan wesftir be û bi ser neket. Her derbe ne baş e. Armanceke vê derbeyê jî tune bû. Ne netewî bû û ne jî çîn î. Tenê derbeyeke teokratîk û faşîst bû. Eger ev derbe pêk bihata, wê rewşa me îro gelek xerabtir bûya. Kurdistan hinekî din zêdetir bi baldarî nêzikî vê mijarê bû. Ez bawer

## Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî hewldana derbeya leşkerî şermezar kir

Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) bi daxuyaniyekê hewldana derbeya leşkerî ya li Tirkiyê şermezar kir û got, "parastina aramî û aştiyê dikeve xizmeta hemû gelên navçeyê."

Serokatiya Rêveberiya Herêma Kurdistanê li ser hewldana derbê ya li Tirkiyê ku 15'ê Tîrmehê pêk hat de daxuyaniyek belav kir. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di daxuyaniyê de şermezariya hemû hewldanan kir ku li dijî îradeya gel û prensîpên demokrasiyê dixwazê sîstema siyasî ya hilbijartî bi riya çek û darbê birûxîn e û wiha got "Ji ber ku lojîkiya çek û tundutîjiya dijî demokrasî û aramiya siyasî û pêkvejiyanê têk dide. Xweşhalîn ku hemwelatiyên Tirkiyê piştevanê Hikûmeta rewa û hilbijartî bûn û rê nedan derbekar bi ser bikevin. Herêma Kurdistana Iraqê xwazyarê aramî û aştiyê ye li Tirkiyê û navçeyê. Ji ber ku tenê aramî û aştî xizmeta berjewendiya gelên navçeyê dike."



nakim ku tu partiyên siyasî yên li herêmê vê yekê qebûl bikin û pesend bikin.

**Serokê ÖSP'ê Sinan Çiftyürek:**
**Li Kurdistanê derketina kolanan geşedaneke erênî ye**

Em weke ÖSP li dijî derbeyê ne. Darbe kê kiribe an ji ku hatibe ew n egirîng e, em li dij derbeyê ne. Her çiqas di vê derbeyê hesabên hindûrîn yên ji bo desthilatê hebin jî, aliyekê wê jî mesela kurdî ye. Em weke partî kêfxweşin ku ev darb ebi ser neket. Lê em bi fikar in ku hikûmeta AKP'ê ku ev heyameke meyla dewleta polîsî ku navenda wê Kurdistane birêve dibe, bihêztir bike û divê em li hember vê yekê rawestin. Lig elek deverên Kurdistanê ne qasî aliyê rojava jî be xelk daketin qadan ev girîng e û erênî ye. Helwesta xelkê ya li hember derbeyê rast e. Em ji AKP 'ê û Serokkomar Erdoğan cihêtir li derbeyê dinêrin û ji re dibêjin na.

**Sekreterê AZADÎ Sıtkı Zilan:**
**Li Kurdistanê hemû alî li ser piyan bûn**

Ev xwebaweriya xelkê Tirkiyê li dijî derbeyê baş e. Wek tê gotin kesên ku hewldan derbeyê pêk bînin, nêzîkî cemaata Gülen in. Îddîa hene ku Cemaata Gülen di bin kontrola DYA'yê de ye. Netewperwer, MHP û hemû derdorên îslamî yên li derveyî Fethullahiyan û li Bakurê Kurdistanê Hüda-Par ev hemû li dijî derbeyê li kûçeya bûn. Piştgiriyeke mezin ya MHP'ê jî hebû. Ew derdorên ku DYA'yê bi destê Fethullahiyan girtibû û xistibû zîndanan ku têkildarî meseleya Kurdistanê û dîzaynkirina Rojhilata Navîn, ev jî li dij derketin.

**Serokê PDK-Bakurê Sertaç Bucak:**
**Berxwedana gel rast bû**

Navneda vê derbeyê Enqere û Stenbol bû. Bi giranî li Enqerê li bajarên rojava pêk hat. Bi taybet dixwazin binê wê xêz bikim armanca hemû derbeyên leşkerî armanca van gelê Kurdistanê bûn. Di hemû derbeyan de gelê kurd û Kurdistanî bi awayekî dijwar hatine pelçiqandin. Di 12'ê Îlonê jî dîsa bi heman tişt. Bi sedan kes avêtin zîndanên Amedê. Ez îro derketina xelkê bo kolan û pêşiya tankan gelek rast û erênî dibînim. Cûntayên leşkerî her demekê talûke ne û divê em li dij derkevin.

**Serokê HAK-PAR'ê Refik Karakoç:**
**Xwedî derketina gel li demokratiyê girîng e**

Hemû cureyên derbeyan ne baş in û nayên qebûlkirin. Ji ber wê yekê peywîra herkesê ye ku li hemberî derbeyê derkeve. Li Tirkiyê derbe her 10 salan carekê pêk dihatin û ev heyameke bê deng bûn. Lê dîsa hewl dan û îmkanê wan yê serketinê tune bû bi serneketin jî. Ji ber ku ev ne din ava leşşkeriyê hemuyê de pêk hat. Lê dîsa jî hewldana derbeyê ye. Rexnekirin, dijderketin û şermezarkirin peywîra hemu mirovên welatperwer û demokrat e. Di vê hewldanê de hinek tiştên nû hebûn. Hikûmetê qad berneda ev girîng bû. Ev aliyiyê wê ji derbeyên din cihê bû. Helwesteke rast û wêrek bû. Aliyekî din jî xelk li hemberî derbeyê derket kolanan. Xwedîderketina gel a li demokrasiyê girîng bû.

**Cîgirê Serokê PSK'ê Bayram Bozyel:**
**Serdema derbeyan derbas bûye**

Ev hewldana dawîn di esasê xwe de ji ber ku Tirkiyê ji proseyên derbeyan yên berê hesap ne pirsî pêk hat. Eger Tirkiyê hesap ji yên ku 12 Îlonê pêk anîn, yên ku 12'ê Adarê dawî li hikûmeta sivîl anîn û yên ku 1960'ê hikûmeta hilbijartî ji kar xistin bipirsiya, derbekar bidarizanda, 2016'an rastî derbeyê nedihat. Helwesta gel ya li hember hewldana derbeyê cihê kêfxweşiyê ye. Ev asta demokrasiyê ya civaka Tirkiyê nîşan dide. Îrada ku hikûmeta AKP'ê nîşan da jî, di vir diyarker bû. Rastiyek heye jî ku derbeyên leşkerî emrê xwe tijî kirine.

Nivîskar, akademisyen û rojnamevan çawa nirixandin?

**Civaknas İsmail Beşikçi:**
**Divê kurd karê xwe bikin**

Ez nafikirim ku Amerîka li pişta vê derbeyê ye. DYA'ê bi rênîşandana Serfemandariyê ve alîkarî da derbeyê. Ev hewldana derbeyê li gorî zincira fermankirinê pêk nehat. Bawer im ku serê vê derbeyê bêhtir Kemalîstan kişand. Dikarîn bêjîn Kemalîstan Cemaatê re hevkarî kir. Lê derbe gelek bêpergal û bê hazirî tê dîtin. Destpêkirina derbeyê ya şevê, pêşiyê bi ser de çûna Serokkomar, Serokwezîr û lijneya wezîran; girtina piran li dijî pratîkên derbeyan e. Sala 2015'an, erîşa li ser Hürriyetê û di erîşên li ser rexnegirên AKP'ê de girseyên rûyê wan reş dîtibûn. Ecêb tê ku van derbekaran, ev qelebalixên xwedî tu nirxên mirovî ne hisabnekirîne.ew qelebalix vê carê jî meydanan bû. Ew qelebalixên hewldan ku derbekaran lînç bikin. Ev girsê nîşanê me dide ku Tirkiyê wê pêşerojê bikeve nav aloziyeke mezin. Hewldana rêvebirina xwe bi xwe, bikaranîn zimanê kurdî li kamûyê, perwerdehiya zarokên kurd bi zimanê tirkî divê girîng bin.

**Nivîskar Oral Çalışlar:**
**Tevgerên kolanan divê venegerin terorê**

15 Tîrmehê, hewldana derbeya faşîst a serneket, teqez di destê FETO hatiye plankirin. Bi vê gotinê ve wateya wekî 'Tirkiye gelek bi îstîkrar bû, pir demokratîk bû,' dernexîn, lê di dendika vî karî de grûbeke leşkeran bi zorê hez kirin desteser rêveberiya Tirkiyê bikin. Gelek insanên bêsûc mirin. Tu aliyê qebulkirin û nermkirina vê bûyerê nîne. Hevî dikim ku piştî xilasbûna derbeyê Erdoğan, bi miameleyeke keyfî ên ku di dezgehên dewletê de ji kar dûr nexe. Jixwe vê gavê îşareteke bi vî rengî tune. Binçavkirin tiştek gelek asa ye û hemû deverên cîhanê pêk tênarmand tedbîrgirtine. 15'ê ŞevaTîrmehê û piştî wê şevê, xelk daket kolanan û ji derbeyên re gotin; 'raweste, ev pêşketineke gelek baş bû. Êdî kesek nikare derbeyan li demokrasiyê bike. Divê li vê qonaxê de du tişt neyên tevlîhevkirin. Daketina xelkê ji bo kolanan û li dijîbûna derbeyê tişteke cuda ye, êrîşkirina ên ku jixwene tiştek cuda ye. Ev tevgerên kolanan divê venegere şerê navxweyî û terora kolanan.

**Nivîskar Fuad Önen:**
**Ev şereke di nava du aliyên derbekar de bû**

Dewleta Tirkiyê di nava aloziyekê de ye. Ev pînekirina Turgut Özal ve hatî destpêkirin biserneket. Li pişta her dewletekê blokeke îktîdarê heye. Bloka di nava AKP'ê û Cemaatê de sala 2013'an ji hev bijikî. Ev pevçûna dawîn jî nîşanê me da ku ev perçebûn gihişte artêşê û dewam dike. Ev şereke di nava bloka îktîdarê de ye. Piştî pevçûna AKP û Cematê, AKP'ê bi dewleta klasîk re li hev kir. Wisa tê dîtin ku ev nêzîkbûna dewleta klasîk jî AKP, ji vê hewldanê xilas nekir. Daketina kolanan encama manîpûlasyona AKP'ê ye. Civak bi du sembolên sed salî ve daket kolanan; yek Ala Tirkiyê yek jî bang. Ez dijîbûna vê derbeyê baş dibînim, lê ev îdolojî şoven û nijadperest bo siberojê xetere dibînim. Her du aliyên tu pîvanên wan ên demokrasiyê nînin. Bi rastî bi avayekî raste rast lê binêrî hurdu alî jî derbekar in. Ji ber AKP'ê bi baska derbekar ve li hev kir û hewl da ku ser piya raweste. Ev şerê demokratan nîne. Şerê di navbera du çiqên derbekaran in. Hundirê vê bertekê hêbetekê demokrasiyê dûr e.

**Prof. Doğu Ergil:**
**Pêşiya sîstema serokatiyê vebû**

Dema em niha dîroka derbeyên leşkerî binêrîn çend taybetiyan dibînîn. Yek ji van, hêzên çekdarî pişkeke mezin di nava mudaxalêda ne û pişka di jî ji aliyên van ve tên asêkirin. Du eger ku li qonaxê armanc rasterast Serokkomar be ku gihiştina Serokkomarî ji bo serkeftina derbeyê faktoreke mezin e. Birêz Erdoğan ji otela xwe a li Marmarisê cuda dibe û piştî saet û nîv din diwere. Bisernakevin, nikarin bi helîkopterê vegerin û direvin daristanê. Yanî heta li wê derê jî diziya lojîstîkî heye. Ev tevgera kêmeka bû, piraniya leşkeran tevlî nebûn.

Projeye sîstema serokatiyê dixwazin danin û ev proje wekî pergalên em dizanîn nabe.Wê bi sîstemeke wekî neyîna prensîba cudabûna hêzên dewletê, desteseriya Serokkomarî û hisabnedana Serokkomarî ve avakiribana. Vê gavê pêşiya vê vebû. Yanî serokatiya fîîlî daye destpêkirin û vê gavê bi serfermandariyê ve destpêdike û gotina 'hemû biryar wê li destê min bin' bigihînin asteke qanûnî, yanî dê pergalekê deynin. Bi mentiq nayê ku ev çend endamên darêzgeriyê dildarên Cemaatê bin. Serbixwe tevdigerin û alîgiriya hikûmetê nakin. Eger ku ev kes ji ber ku aligeriya hikumetê nakin ji kar hatibin dûrxistin tişteke tirsdêr e. 27'ê Gulanê jî anîne rewşa cejnê. Di rewşên awarte de kî îktîdar be ji bo berjewendiyên xwe tev digere.





# Li Rojhilat derfeteke zerîn ketiye destê kurdan

Hêmin Dildar

Duristbûna nakokiya mezhebî ya li Rojhilata Navîn û destêwerdanên Îranê yên li heremê rê li ber wê yekê vedike ku kurdên Rojhilat jî di nava vê konjonkturê de cihê xwe bigrin û li dijî rejima Îranê dest bi bilindkirina daxwaza mafên rewa bikin. Her bi vê mebestê partiyên Rojhilat ku zêdetirê 20 salan li kampên Başûr bi cih bûne û dev ji xebata leşkerî berdane, careke din dest biavêjin çekan û Pêşmerge dîsa vegere welat.

Partiyên Rojhilat; Komalaya Şoreşger û Zehmetkêşên Kurdistanê, Komelaya Şoreşger û Zehmetkêşên Kurdistana Îranê, Hizba Demokrata Kurdistanê, (HDK) Partiya Demokrata Kurdistana Îranê (PDKÎ) û Partiya Azadiya Kurdistanê (PAK) di nava amadekariyan de ne ku li Rojhilatê Kurdistanê dest bi siyaseteke aktîv birêve bibin û berê hêzên xwe bidin welat. Di Newroza îsal de PDKÎ û PAK'ê amaje li ser wê yekê kiribûn ku ew ê hem êdî destêwerdana Îranê ya li Başûr qebûl nekin û ew ê berê hêzên xwe bidin Rojilat. Herwiha layanan dabûn zanîn ku eger Îran êrîşî wan jî bike ew ê ji bo bergiriyê bersiva Îranê bidin. Meha borî di navbera Pêşmergeyên PDKÎ û Pasdarên Îranê de li çendîn deveran şer derketibû, hejmareke zêde pasdar û 13 Pêşmergeyan jiyana xwe ji dest dabûn. Rejima Tehranê li ser vegera Peşmerge, li herama sînor xaka Başûr bombardiman kiribû hejmarek zêde eşker anîbû ser sînor. Gef û tehdîdên rejima Îranê jî didomin.

Rejîma Îranê jî di hefta borî de 'bi sedema bazirganiya madeyên hişbir' 16 kes li Tehranê îdam kir. Hat zanîn ku di nava van kesan de jinek jî heye.

Hefteya borî aliyên siyasî bi minasebeta 27. saliya kuştina Sekreterê berê yê PDKÎ'yê Dr. Abdurahman Qasimlo li Viyanê banga grevê li xelkê Rojhilat kirin. Xelkê hemû bajarên Rojhilat di wê rojê de dikanên xwe venekirin û di malê de man. Herwiha li Mahabad û Merîwanê ala Kurdistanê bilind kirin û kuştina Dr. Qasimlo şermezar kirin.

Li aliyên din gefxwarina rayedarên Îranê li ser Başûrê Kurdistanê jî berdewam dike. Vê hefteyê Sekreterê Dezgeha Parastina Berjewendiyên Îranê û fermandarê berê yê Pasdaran Muhsin Rizayî, gef li Herêma Kurdistanê xwar û ragihand, eger Barzanî pêşiya êrişên hêzên Rojhilat negre wê li dijî wan "operasyona îmhakirinê" bikin.

Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî demildest bersiva gef û tehdîdên Muhsin Rizayî da û tekez kir ku îddîayên Rizayî ne rast in û bê bingeh in.

Li aliyê din teqîna çekan û rewşa herêmê aliyên siyasî yên kurd jî nêzîkî hevdu dike. Nûnerên partiyên Rojhilat ji BasNûçe'yê re tekez kirin ku piştî wan rûdanan ew nêzîkî hevbûne û dest bi danûstendinên yekrêziyê kirine û li baregeha PDKÎ'yê bi vê armanca çend civîn jî birêve çûne.

**Fermandarê PAK'ê Yezdanpena: Îran şer dixwaze, em ê şer bibin Tehranê**

Ji partiyên Rojhilat PAK ku li Başûr berê Pêşmergeyên xwe daye bereyên şer û li dijî DAIŞ'ê şer dike, amadekarî dike ku vegere welat. Cihgirê Serokê PAK'ê Hûsên Yezdanpena ji BasNûçe'yê re anî ziman ku eger Îran zilma xwe li dijî kurdên Rojhilat bidomîne û destêwerdana siyasî ya li Rojhilat bike ew ê bi tundî bersiva wan bidin. Yezdanpena tekezî li ser wê yekê jî kir ku Îran şerfiroşiyê dike û ew ê di demeke nêz de bersiveke tund bidin Îranê. Yezdanpena wiha got: "Me berê jî ragihand eger Îran destêwerdana siyasî di Herêma Kurdistanê de bike, eger Îran, li dijî kurdên me yên Rojhilat zilmê bidomîne em ê şer bibin Tehranê û bi tundî bersiva wan bidin. Me ji xelkê Rojhilat re jî ragihandiye hûn li dijî Îranê çi karî bikin, em li pişta we ne em ê berevaniya xelkê xwe bikin."

**Endamê PDKÎ'yê Naser Moradî: PDKÎ peyama xwe dibe welat**

Endamê PDKÎ'yê Nasser Moradî jî, li ser geşedanên dawîn yên Rojhilat ji BasNûçe'yê re axivî û da zanîn ku hefteya borî li welat greveke giştî pêk hatiye û xelkê Rojhilat piştî banga Sekreterê PDKÎ'yê jî xwe ji xebat û qonaxa nû re amade kiriye. Moradî wiha axivî: "Sekreterê Giştî yê PDKÎ'yê rêzdar Mistefa Hicrî banga pêkve girêdana xebata bajar û çiyan kiribû. Her bi wê armancê Pêşmergeyên me amadekariyên xwe kirin ku xebata xwe bibin nav bajaran. Armanca sereke ya PDKÎ'yê xebata medenî û siyasî ye ku ew di Newrozê de hat ragihandin û hejmareke Pêşmerge li ser bajarên ser sînorê Rojhilat bi cih bûn. "

Moradî, eşkere dike ku PDKÎ heta niha ji bo çareserkirina pirsgirêkên kurdan li Rojhilat di nava xebatê de bûye û bi her awayî karê xwe yê siyasî birêve biriye: "PDKÎ hertim xwedî peyameke bûye û baweriya wê bi çareseriyeke aştiyane hebûye. Dr. Qasimlo çû ser maseya diyalogê. PDKÎ hertim li ser kar bûye, çi xebata çekdarî, çi rêxistinî, çi jî dîplomasî û ragihandin be. Ya herî derketiye pêş hêla me ya çekdarî ye. Rejima Îranê êrîş li me dikir me jî parastina xwe dikir."

**Rojnameger Sohrab Karîmî: Îran ji xebata siyasî nerazî ye**

Rojnameger û lêkolîner Sohrap Karîmî jî ji BasNûçe'yê re geşedanên dawî, greva giştî ya li Rojhilat şîrove kir. Karîmî da zanîn ku rejima Tahranê bi tu awayî îcaze nade ku xelk xebata medenî û siyasî bikin û ji ber wê çendê nerazî ye ku partiyên kurd jî li Rojhilat bi awayekî aktîv hebin: "Xebatên medenî û siyasî li Îranê qedexe ne û Tahran îdda dike ku pirsgirêkên kurdan nîne. Bi taybetî kurdên Rojhilat gelek zor û zextan dibînin ji destê Îranê. Rejim tu caran hez nekiriye vê meselê çareser bike û her tim helwesta wê gelek tund bûye. Eger em wek teorî jî bifikirîn ev meseleke netewî ye, lewma Îran gelek ditirse. Îcaze nade ku partiyên siyasî yên kurd xebatan bikin."

**'Derfet heye lê divê kurd yekdeng bin'**

Rojnameger Karîmî pevçûnên di navbera Pêşmerge û Pasdarên Îranê jî bîr xist û da zanîn ku eger kurdên Rojhilat hevkarî bikin ew ê xisarên mezin bidin Îranê: "Ev biryara PDKÎ'yê ez bawer im wê Îranê çavtirsî bike. Bi van pevçûnên Rojhilata Navîn derfetekî mezin bo kurdan peyda bûye. Bi taybetî siyaseta navdewletî, meşrûbûn û ligel hebûna DAIŞ'ê kurd, bûne xwedî hêzekî berevaniyê. Wekî tê zanîn politikayên Îranê en heremê bi politikayên dewletên din re lihev dikevin. Şereke li ser şopa împaratoriyan û mezheban heye. Ev bo kurdan derfetek e. Lê divê em ji bîr nekin ku gava dor hate kurdan hemû dewletên herêmê nakokî û dijminiya di nava xwe de dihêlin û li hember kurdan yekdeng dibin. Li ser van geşedanan ez bawer im ev biryarekî stratejîk e. Lê divê kurd jî hevdû bigrin û yekdeng bin. Derfeteke zerîn ketiye destê kurdan û divê vê yekê bi cudahiyên îdeolojîk, berjewendiyên rêxistinî û dijminiyê pûç nekin. Dîktator û zalim herî zedê nakokiyan bikartînin. Dibe ku kêmasî û zêdehîyên vê biryarê hebin, lê partiyên kurd divê êdî nakokiyên nav xwe çareser bikin û li hev werin, jixwe ev proseyeke asayî û zarûrî ye."

## Doç. Vahap Coşkun:

# Têkçûna darbeyê serkeftina demokrasiya kurdan û Tirkiyê ye

"Divê Erdoğan û hikûmet ji helwesta civakê û kiryaran dersekî derbixin; divê ev yek ji bo pêşkeftina demokrasiyê wekî derfetek bê bikaranîn. Ji ber ve gotora demokrasiyê, bibe bingehîna polîtîkayên AKP'ê. Helbet hewceye hewldarên darbeyê bên cezakirin; lê divê di çarçoveya hiqûqê de bên cezakirin. Divê ji bo vê hemû pîşgirî bên girtin. Pêwîst e ji bo gel hemû baskên demokrasiyê bên sazkirin. Ji bilî ve kiryarek din bê kirin, endamên AKP'ê jî wê qebûl nekin."

M. Salih Bedirxan

Hewldana darbeya leşkerî ya di şeva 15'ê Tîrmehê de li paytext Enqerê û li bajarê Stenbolê pêk hat bû sedama nerazîbûna xelkê li Tirkiyê. Li hemû bajarên Tirkiyê û li bajarên kurdan xelk derketin kolanan û nerazîbûna xwe li dijî hewldana darbeya leşkerî anîn ziman.

Gelê kurd ê di dema darbeyên leşkerî de hertim ji aliyê leşkeran ve dihat çawisandin vê carê rijiyan kolanan û rê nedan ku dîsa darbe pêk were û ew fişara salên 1980'yî û 1960'î dûbare bibin. Li dijî hewldana dawîn ya darbeya leşkerî li hemû bajarên kurdan xelk, nûner û berpirsên saziyên medenî bi daxuyanî û axaftinên xwe ew hewldan bi tundî şermezar kirin û dan zanîn ku nabe tu kes vîna gel binpê bike.

Akademîsyenê Zanîngeha Dicleyê Doçent Vahap Çoşkun, têkçûna hewldana darbeyê wek serkeftina demokrasiya kurdan û Tirkiyê dinirxîne. Doç. Çoşkun, helwesta siyasetmedar û xelkê kurd a li dijî darbeyê, îhtîmala pêkhatina darbeyê ji BasNûçe'yê re nirxand. Coşkun tekeziyê li ser wê yekê dike ku divê hikûmet ji vê yekê dersan bistîne.

**Li hemû bajaran kurd derketin kolanan û nerazîbûna xwe li dijî darbeyê nîşandan, tu vê yekê çawa şîrove dikî?**

Hewldana darbeye li dijî gel hatiye lidarxistin. Divê ji bo demokrasiyê li hemberê vê bê sekinandin. Hemû civaka Tirkiyê bi tevahî li dijî vê sekînin û ev yek ji bo demokrasiya Tirkiyê serkeftineke dirokî ye. A duyem jî darbe tenê li dijî partiya deshilatdar naye çêkirin. Hemû darbe, rasterast li dijî demokrasî, siyaset û civakê tên çêkirin. Dema em dîroka darbeyên Tirkiyeyê binêrin, piştî darbeyên ku gihiştine serkeftinê, zext û zilm hatiye kirin. Yanî civaka Tirkiyê, di warê encamê darbeyan de xwediyê gelek tecrûbeya ne. A sêyêm jî ew e ku darbeya 1980'î daye xuyakirin ku mexdûrên herî mezin ên darbeyan kurd in. Piştî darbeyan li dijî kurdan polîtîkayên zext û zilmê hatine mêşandin. Hewldana darbeya 15 Hezîranê û danezana ku ji aliyê TRT'ê hatibû xwendin, destnîşaniya zêdekirina zexta ser kurdan û rêyê meşrûiyeta vê kirine. Ji bo xelatiyên ku hatine kirin, ji bo darbeyan, li rêyên yaseyî hatiye gerandin. Heger, darbe serbiketa, ji bo kurdan wê xeteriyek mezin destpê bikirabiya. Ji ber vê ye, kurdan hem ji bo demokrasiyê û hem jî ji ber tecrûbeyên dîrokî li dij vê kiryarê sekînin. Li hemû bajaran, di destpêka darbeye de derketin kolanan û li dij darbeyê li qadan mêşiyan. Hem ji bo kurdan û hem jî ji bo demokrasiya Tirkiye serkeftinek gelekî mezin e.

**Siyaseta kurd diyar dike ku li hemberê darbeyê ye. Lêbelê di destpêka şeva darbeyê de HDP'ê dereng nerazîbûn destnîşankir, gelo sedema vê yekê çi bû?**

Darbe di saet nêzîkê 222:00'an de rasterast bi tevahî diyar bû û HDP jî di saet 23:00 de daxuyaniyek ragihand. HDP'ê helwesta xwe ya li dijî darbeye ragihand. Li gorî min, ev rave gelekî girîng e. Heger hûn fikre min bipirsin, ez vê şevê ji aliyê HDP û ji Selahattin Demirtaş ve li benda daxuyaniyek têr û tijî bûm. Heger Demirtaş derketa ser ekranên televîzyonê û bi awayek zelal bi aniya zimen, wê baştir bibûya. Li gorî min tiştên girîng ew e ku ku hemberê hewla darbeyê hatiye sekinandin. Vê hewldana darbeyê ne ji aliyê siyasetê de ne jî ji aliyê civakê de piştevanî peyda nekiriye. Erê, em dikarin hin kiryarên civakê rexne bikin. Lêbelê ez bawer dikim ku deklerasyona ku ji HDP, CHP û MHP'ê ve li dijî darbeye hatiye ragihandin, daxwaza hewldanên darbeyê vala derxistiye.

**Di şeva hewldana darbeyê de di bajarên kurdan de leşker derneketin kolanan. Lê dihat îdiakirin ku hikûmet bi Ergenekonê re hevkarî dike. Ji aliyê din di derbayê de hevkariya Cemaat û Ergenekonê tê axaftin. Tu li ser vê yekê çi difikirî?**

Li bajarên Mardîn, Bîngol, Ardahan, Colemerg fermandar hatin binçavkirin. Ez bawer dikim leşkeran li Kurdistanê jî pîştevaniya darbeyê kirin. Ji ber ku fermandarên li Kurdistanê, di nava vê fermanê de nebûn. Fermandarê yekem ê Arteşa Tirkiyê diyar kir ku ev fermana Arteşa Tirkiyê nîn e û ew alîgîriya vê nakin. Yanî fermandaran nexwastin di nava vê şebekeya xiyanetê de cih bigrin. Hikûmet hesasiyetek mezin dide Cemaatê. Çawa di civakê de li dijberên Cemaatê hene; herwiha di nava arteşê de jî dijberên Cemaatê hene. Di hin cihan de fermadar piştevaniya hevdû kirine; lê li hemû cihan de ev yek pêk nehatibû.

**Heger hewla darbeyê, serkeftî bibûya wê li bajarên kurdan bûyerên çawa pêk bihata?**

Di despêkê de rêveberiya awarte wê bihata ragihandin û li hemû cihan, fermandar wê bihatana tayîn kirin. Wê kurd gelekî mexdûr bibûyana. Em dikarin vê encamê ji danezana darbekaran derxin û ji darbeyên berê ve jî encamek wisa derdikeve.

**Hat dîtin ku PKK'ê jî nexwast vê rewşê bi kar bîne. KCK daxuyaniyek belav kir û da zanîn ku ew weke rêbaz li dijî darbeyê ne. Piştî vê darbeya têkçûyî, têkîliyên HDP/PKK û AKP'ê wê çawa be?**

Ew tiştekî girîng e. Divê ev, ji xirabiyê bê cûda kirin. Du encam derdikevin holê. A yekem, pewîst e, ev piştevaniya civakê, ji bo tesîsa aştiyê bê bikaranîn. Divê ev di tevahiya Tirkiyê de hem ji bo bidawîkirina qeyrana siyasî û hem jî ji bo civakê wekî derfetek bê nirxandin. A duyem jî ew e ku dema ku em li dîroka Tirkiyê dinêrin jî em dikarîn vê bi awayek zelal bibînin; leşker, bi sedema pirsgireka kurd mudaxaleyî siyasetê kirine. Çi wext pirsgireka kurd tê qonaxa şîddet û mirine, leşker di xwe de mafê mudaxaleya siyasetê dibînin. Heta ku pirsgirêka kurdan neye çareserkirin, mudaxaleyên wisa wê tim were serê demokrasiyê. Divê ev mesele ji qonaxa şîddetê bên derxistin û divê ji bo çareserkirinê riyên hiqûq û demokrasiyê bên bikaranîn.

**Artêş di nava civaka Tirkiyê de weke ,"ocaxa pîroz" dihat qebûlkirin. Yekem car e leşker ji aliyê xelkê ve hatin lînçkirin, xelkê pîrozî û parêzbendiya leşkeran ji holê rakir. Hûn vê yekê çawa dinirxînin?**

Belê rast e. Wê bûyera serî jêkerinê nehat piştrastkirin, ew derew bû. Çawa ku awantajên medyaya civakî hene; herwiha dezavantajên wê jî hene. Taybetî ji bo manîpûlkirina civakê, bandorakek wê ya mezin heye. Divê civak bala xwe bide ser vê jî. Vê hewldana darbeyê ji bo fikirandina ser têkîliyên leşker-civak û civak-leşker gelek girîng e û ji bo civakê wê bibe sedema encamên girîng. Encama yekemîn ew e ku pergala leşkeriyê wê ji nûh vê bê avakirin. Ev mijar gelek girîng e. Di nava arteşê de hemû endamên cûntayê wê bên tasfiyekirin û artêş ji nûh ve wê bên sazkirin û ev peywirek gelek muhîm e. Ya din jî ew e ku heger leşker di sînorên civakê de tevbigere, civak destûre nade wan. Civakê destnişan kir ku êdî naxwaze leşker mudaxaleya vîna wan bike. Ji îro ve ji bo siyasetê ev yek serkeftineke girîng e.

**Herçend komîteya darbeyê di danezana xwe de destnîşanî bi rêbazên Atatürk dan jî, CHP û MHP nerazîbûnek nîşanî wan da. Hûn vê çawa dinirxînin?**

Dema ku em, darbeyên berê dinerîn, em dibînin ku her tim balê dikşînin ser dûrketina nirxên Komarê. Ew danazana wan jî wek danezana darbeya 1980'yî ye. Bi vî awayî darbeyan meşrû dikin. Hertim destnîşaniya xerabûna siyasetmedaran dikin û îddîa dikin ku siyasetê ji nûh ve wê bê sazbikirin. Ji ber ku têkîliyên darbe û Cemaatê derket holê, MHP'ê jî piştevaniya wê nekir. CHP'ê jî dit ku hemû beşên civakê li hemberê vê rûdanê disekînin, ew jî mecbûr ma û nerazûbûna xwe nîşan da. Di darbeyên berê de meşruiyeta civakî tûne bû û civak jî li hemberê wan darbeyan nesekînin. Lêbelê civak di vê darbeyê de nerazûbûna xwe nîşan dan. Herwiha partiyên siyasî jî nikarin li hemberê vîna gel bisekinin.

**Hem Obama û hem jî John Kerry ragihandin ku piştevaniya hikûmeta meşrû dikin. Li gor xwendina te, rola Amerîka di vê darbeyê de çi bû?**

Li gorî min, wê daxuyaniya Amerîkayê weki parastineke demokrasiye nebû. Ewîl, tenê ji bo tiştekî bibêjin, axafîn. Lêbelê gotinên wan ên li hemberê darbeyê tûndtir bûn. Niha ji bo Tirkiyê nîşankirina dewletan helwestek baş nîn e. Wê hêdî hêdî hemû tişt bi awayek hûrgilî derkeve holê. Gotinên niha spekûlasyon in.

**Serokkomar Erdoğan, Serokwezîr Binali Yıldırım, demildest kiryarên hewldanên darbeyê qebûl nekirin û li dijî wan têkoşiyan, ji bo derketina kolanan bangawaziya gel kirin. Gelo piştî vê darbeyê demokrasiya hikûmetê wê pêşbikeve an wê ber bi desthilatdariyeke tûnd ve here?**

Hikûmet, ev qeyran bi awayek baş birêvebir. Hemû endamên wê li dij derketin û diyar kirin ku ew wê bi tu awayî vê kiryarê qebûl nakin. Helbet alîgîrên AKP'ê û kesên din wêrekî kirin. Heger AKP û deshilatdariya siyasî bi wî awayî tevenegeriyabûn, ev bûyera wê pêk bihata. Beşdarbûna Erdoğan bi rêya telefonê ya weşana televîzyonan, bangawaziya civakê û bicihanîna daxwaza vê gelek girîng e û ev îspatkirina rûşda siyasî ye. Heger ev bangawazî, pêknehata, hem ji bo Tirkiyê û hem jî deshilatdariya siyasî serdemek dijwar destpêdikir. Divê Erdoğan û hikûmet ji helwesta civakê û kiryaran derseke derbixin; divê ev yek ji bo pêşkeftina demokrasiyê wekî derfetekî bê bikaranîn. Ji ber ve gotara demokrasiyê bibe bingehîna polîtîkayên AKP'ê. Helbet hewce ye hewldanên darbeyê bên cezakirin; lê divê di çarçoveya hiqûq de bên cezakirin. Divê ji bo vê hemû pîşgirî bên girtin. Pêwîst e ji bo gel hemû baskên demokrasiyê bên sazkirin. Ji bilî ve, kiryarek din bê kirin, endamên AKP'ê jî wê qebûl nekin.

**Yekser hat gotin ku Cemaata Gülen li pişt vî karî ye. Gelo em dikarin bibêjin, di nav arteşê de bandora Cemaatê ewqas mezin e? Herwiha tê îdiakirin ku fermandarên Kemalîst jî beşdarî darbeyê bûne. Tu li ser vê yekê çi dibêjî?**

Niha ne mimkûn e kes derbarê wan îddiayan tiştekî bibêje. Lê hertim dihat gotin ku Cemaat, di hundirê arteşê de wê darbeyek pêk bîne. Ew gotin ji hilbijartinên 1'ê Mîjdarê ve hebûn. Heta beriya hilbijartinên 7'ê Hezîranê, di meha Gûlanê de dihat axaftin ku di hilbijartinên 7'ê Heziranê de wê darbeyek pêk were. Lê nebû. Herwiha di medyaya Cemaatê de û di medyaya civakî yên endamên Cemaatê de dihat nivîsandin ku wê beriya 30'ê Tebaxê yanî beriya civîna leşkerî ya YAŞ'ê, tevgerek leşkerî pêk bê. Ji ber vê demildest Cemaat hat sûcdarkirin. Lêbelê kesên ku niha hatine binçavkirin, tu têkîliyên wan bi Cemaatê re tune ye. Heger wekî tê gotin, wan kesan endamên Cemaatê ne, vê çaxê divê em qebûl bikin ku Tirkiyê di bin dorpêça Cemaatê da ye. Ji ber ku wan kesên ku hatine girtin, di arteşa de di meqamên gelek krîtîk de kar dikin û ev jî dide xuyakirin ku em bi xeterek mezin re rûbirû ne.

**Çawa haya hikûmetê ji tiştekî wisa çênebû ye?**

Helbet ev jî mijarek e û divê li ser bê nîqaşkirin. Gelo dikaribûn pêş li bûyerê werbigirtana an na? Yan jî derbarê vê de agahiyên îstîxbaratî hebûn an tunebûn? Divê ev hemû bi awayek hûrgîlî bên nirxandin. Lê hewce ye hêzên ewlehiyê amadekariyek istîxbaratî bikirabiya. Lê piştî bûyerê di nav ewlehî û hiqûqê de dest bi xebatê kirin. Helbet ev girîng e. Di hewldana darbayê de hin kêmasî hebûn an tûnebû, divê lêpirsinek bên kirin. Pêwîst e hikûmet rê li ber wan kiryaran bigre. Di nava arteş û ewlehiyê de hin tişt bên guherandin. Heger negûherînin, her tim îhtîmala darbeyê wê hebe.

**Tirkiye bi kareseteke mezin re rû bir û ma. Piştî vê yekê divê çi bên kirin?**

Heger ev darbe pêk bihata, Tirkiye di ware aborî, siyasî û civakî de wê zirarek mezin bidîta. Me xeterek mezin derbas kir. Divê ji vê bûyerê dersek baş bê derxistin. Em heta wê rojê çawa hatin, li ser bê fikirinadin û divê rê li ber bûyerên wiha bê girtin. Herwiha kesên ku vê kiryarê rabûne, divê bi rêyên hiqûqî bên cezakirin. Divê artêş ji nûh ve bên sazkirin û Tirkiyê bê astekî demokrasiyê û bi riyên demokrasiyê pirsgirekên kurdan bên çareserkirin.

**Ez dixwazim bêm ser proseya dadgehkirina tewankarên darbeyê. Ew ê proseyeke çawa bi rêve biçe? Ew ê çawa bên darizanindin?**

Ew ê darizandin li gorî asta wan bên kirin. Kesên ku leşker in, divê li gorî vê bên darizandin. Nêzîkê 3000 dadger an dozger hatin binçavkirin. Heger cezayê giran hewce bibe û herwiha sûcên ji holêrakirina pergala Destûra Bingehîn hebe, di yaseyê de ji bo wan çiqas ceza heye, divê li gorî vê bên cezakirin. Pêwîst e îdianameya wan baş bê amadekirin û hemû têkîliyên wan baş bên îspatkirin. Divê hemû delîl baş bên komkirin û darizandina wan di çarçoweya hiqûqê de pêk bê. Kesên ku başdarê vî karî nebûne, hewceyê baş bên tespîtkirin. Herwiha di darizandinên wisa de, hewce ye wan kesan di ûcdanê civakê de jî bên cezakirin.





Murat Özdemir



Rojava

# Li Menbîcê şer, li Qamişlo destûr

Li Sûriyê û Rojavayê Kurdistanê li aliyekî şer didomin li aliyên din, layanên şer amadekariyên siyasî dikin. Şerê ku di navbera hêzên Meclîsa Menbîcê û DAİŞ'ê de didome jî berdewam e. Li aliyê din jî Rêvebiriya Kantonên Rojava niha ji bo Herema Federal ya Rojava–Bakurê Sûriyê Destûrek amade dike, li aliyê din ENKS bi beşdarbûna pispor û şarezayên amerîkî û ewropî destûreke amade kiriye.

Li Sûriyê û Rojavayê Kurdistanê li aliyekî şer didome li aliyên din, layanên şer amadekariyên siyasî dikin. Şerê ku li Minbîcê di navbera hêzên Meclîsa Menbîcê û DAİŞ'ê de didome berdewam e. Li gor agahiyan bajêr ji sedî 60 ji aliyê hêzên Meclîsê ve hatiye rizgarkirin û pevçûn didomin.

Di vê navberê de Rêvebiriya Kantonên Rojava ku serkêşiya wê PYD dike di 17'ê Adarê de hersê kantonan gihandibû hev û Herema Federal ya Rojava–Bakurê Sûriyê ragihandibû. Niha jî ji bo vê federasyonê xebata amadekariya Destûrê tên kirin.

Li gor vê destûra ku wê ji 85 bendan pêk bê û sîstema hevserokatiyê diparêze, Qamişlo weke paytexta Rojava tê destnîşankirin. Her wiha ji bo federasyonê al û nîşanek jî tê amadekirin.

Li hêla din Encumena Niştimaniya Kurd li Sûriyê (ENKS) jî bi beşdarbûna pispor û şarezayên amerîkî û ewropî destûreke ji 132 bendan pêk tê amade kir. Li ser destûrê niqaş tên kirin û ENKS dixwaze destûra xwe ya ji bo federasyona Rojava û çareserkirina qeyrana Sûriyê di civînên navnetewî yên derbarê Sûriyê de bîne rojevê. Li hêla din ENKS ku di nava opozîsyona Sûriyê de cih digire, ji hikûmeta demkî ya opozîsyonê vekişiya. ENKS'ê bi sedema ku wezaretên hikûmetê bi awayekî adîlane nehatine belavkirin û temsîlyeta kurdan tê de kêm e ji hikûmetê vekişiya. Lêbelê hebûna ENKS'ê ya di nava opozîsyona Sûriyê de wê berdewam bike.

Li heremê Operasyona Minbîcê jî berdewam dike. Operasyona ku 1'ê Hezîranê destpê kiribû de ji sadî 60'ê bajêr hatiye kontrolkirin û tê ragihandin ku di demek nêz de bajêr wê bi temamî ji DAİŞ'ê were paqijkirin.

Li hêla din tê diyarkirin ji ber hebûna sivîlan, hem hêzên kurd û hem jî hêzên Hevpeymana Navdewletî naxwazin bajar zêde wêran bibe. Ji ber wê yekê jî operasyon bi giranî birêvediçe. Herwiha di vê çarçovê de tê gotin ku çekdarên DAİŞ'ê xwestine ku korîdorek bo derketina wan ji bajêr bê vekirin da ku xwe bigihînin Reqqayê. Hêzên Meclîsa Minbîcê ku operasyonê birêvedibin jî ji bo ku sivîl zirar nebînin û bajêr zêdetir wêran nebe vê pêşniyarê qebûl dikin. Li gor agahiyan dibe ku di demên pêş de korîdorek ji bo derketina DAİŞ'ê bê verkirin.

Reva xelkê sivîl ya ji herema şer jî dewam dike. Heta niha bi hezaran sivîl ji herêma Şehba û deverên din bazda ne û xwe spartin herêmên ewle. Rêveberiya Rojava jî tevî derfetên xwe yên kêm hewldide ku pêdawîstiyên penaberan dabîn bike. Ji bo peneberan kampeke bi navê Şehba hat avakirin û tê de 500 kon hatine danîn. Ji bo kampê banga alîkariyê civaka navdewletî jî hat kirin.

Li hêla din li gor hin angaştan hikûmeta Tirkiyê piştî ku bi Rûsya û Îsraîlê re aşt bû niha jî dixwaze bi rejîma Esad re jî pêwendiyan saz bike. Tirkiye ku ji destpêka qeyrana Sûriyê heta niha piştgirî û alîkariya opozîsyona Sûriyê dikir û bi piştgiriya DAİŞ'ê jî dihat tawanbarkirin, bi vê yekê dixwaze çeperekî nû li dijî kurdan vebike. Li gor agahiyan rejîma Esad jî ji bo vê hewldana li dijî kurdan ji Tirkiyê daxwaza hevkariyê dike. Wek tê zanîn, çendîn rayedarên hikûmeta Tirkiyê bahsa danîna têkiliyên bi rejima Esad re kiribûn û di navbera aliyan de bi navbenkariya Cezayîrê civînek hatibû lidarxistin.

**Îsmet Şêx Hesen: Dixwazin kurd û ereban berî hev bidin**

Serokê Desteya Parastinê yê Kobanê İsmet Şêx Hesen geşedanên leşkerî û siyasî ji BasNûçe'yê re nirxand û got ew wek HSD û YPG/YPJ piştevaniya hêzên Meclîsa Leşkerî ya Minbîcê dikin û wiha axivî: "Pêşketinên leşkerî ne tenê yên hêzên kurd in. Hêzên HSD'ê bi hev re vê yekê pêk tînin. Em piştgirî û alîkariyê didinê ku ji bo ev komên çete ji herêmê werin paqijkirin."

Serokê Desteya Parastinê li ser nêzîkbûna Enqere û Şamê jî ragihand ku ew berê jî gelek caran gihiştine hev. Lêbelê ne li ser esasekî rast, ji bo xapandinê û ji bo berjewendiyên xwe tim tên gel hev: "Ji bo berjewendiyên xwe dibe ku Enqere xwe bigihijîne Rejîma Esad. Yek ji berpirsiyarê ev şer û wêrankirinê dewleta Tirkiyê ye. Wan dixwest gelê kurd û gelên Sûriyê bi hev bikevin. Lêbelê ev xwesteka wan pêk nehat. Hêza ser erdê HSD xwe gihande hevdû û roj bi roj Bakûrê Sûriyê ji komên çete paqij dikin û ji herêmê derdixin ku ne rejîma Esad û ne jî komên çete tê de bicih bibin."

Hesen destnîşan kir ku naxwazin gelên ereb û gelên Sûriyê bi hev re tevbigerin û hev bigirin û wiha pê de çû: "Naxwazin biratiya gelan pêk were. Em îro bi dehan şehîdan didin. Em herêmê ji komên çete û DAİŞ'ê paqij dikin. Herdu alî li dij vê yekê ne û ji bo ku em negihîjin hevdû em û ereb dixwazin navbera gelan vekin û îrade gelên kurd û ereb bişkînin. Lê nikarin vê îradeyê bişkînin. Niha ji Şedadê bigire heta Minbîcê HSD bicih bûye û gelê kurd û ereb biratiyê esas girtiye û tirkmen, suryanî û gelên din hemû yek in û nikarin îradeya gelan bişkînin."

**'Tu kes nikare êrişî Rojava bike'**

İsmet Şêx Hesen got ne rejima Esad û ne hêzeke din nikare êrişî wan bike û wiha got: "Ne tenê kurd, suryanî, tirkmen, ereb, ermenî û hemû gelên herêmê destê xwe dane hevdû û quweta wan heye û rojane bi pêş de diçin. Herkes wan hembêz dike. Ne rejîm û ne DAİŞ û ne hêzeke din nikare vê hêz û îradeyê bişkîne. Ji bo Sûriyeyeke demokrat, wekhev ku hemû pêkhate tê de jiyan bikin em soz didin gelê xwe, em ê têbikoşin û tu kes nikare îradeya xelkê herêmê bişkîne. Pêşketinên leşkerî wê li ser dîplomasiyê jî tesîr bike. Em niha di nava şer de ne. Em niha herêmê paqij dikin. Niha destûr tê amadekirin û di pêşerojê de wê ev di warê dîplomasî û siyasî de jî cihê xwe bigire."

**Nûnerê ENKS'ê Elî Remî: Li ser mesela kurdî ew aliyên ji hev cuda tên ba hev**

Nûnerê Encumena Niştimaniya Kurd li Sûriyê (ENKS) Elî Remî li ser nêzîkbûna Tirkiyê û rejîma Sûriyê ji BasNûçe'yê re ragihand ku hikûmeta Tirkiyê piştevaniya xwe ji bo şoreşa Sûriyê ragihandiye û li ser wê yekê li gel îtîlafa Sûriyê axifiye: "Di vê astê de jî Tirkiye piştevaniya xwe ya ji bo opozîsyona Sûriyê berdewam kiriye. Heta niha em pê nehesiyane ku rejîmê û Tirkiyê li dijî kurdan bi hev re tiştek avakirine. Li ser mesela kurdî aliyên ji hev cuda tên cem hev. Tiştên ku Tirkiyê ji îtîlafê re gotiye ku heta ku rejîm bê rûxandin piştevanî û alîkariya hêzên opozîsyonê wê were kirin e."

**'Dibe ku siberojê rejîm êrişî kurdan bike'**

Li gor Nûnerê ENKS'ê dibe ku rejîm siberoj berê xwe bide kurdan û wiha got: "Hêviya me ew bû ku hêzên kurd li heberî vê yekê di navbera xwe de yekgirtinekê ava bikin û hêzên navnetewî pişta wan bigirin û li ser erdê zêdetir bihêz bin. Lêbelê ev jî pêk nehat. Xeter li ser herêmê heye."

**'ENKS ji hikûmeta opozîsyonê vekişiya'**

Remî derbarê veqetîna ENKS'ê ji Hikûmeta Demkî ya Opozîsyona Sûriyê jî destnîşan kir ku opozîsyon û hikûmet ji hev cuda ne: "Hebûna me ya di nav opozîsyonê de, biryareke stratejîk e, meseleya azadî, demokrasî û pêşeroja Sûriyê ye. Em ji nav opozîsyona Sûriyê dernakevin. Lê di hikûmetê de ji bo ku texsîr li kurdan kirin, para kurdan nedan û ji ber wê yekê jî me xwe ji hikûmetê kişand. Lê niha dixwazin, hewldanên wan hene ku kurd dîsa beşdar bibin û dixwazin kurdan razî bikin. Ji bilî wê yekê ENKS destûrek jî amade kiriye û gûftûgoyên li ser destûrê berdewam dikin. Kesên şareza û pispor li ser vê meselê kar dikin."

**Rojnamevan Mesto: Bajar bi pirranî di bin kontrolê de ye**

Rojnameger Amîna Mesto ku li herêmê geşedanên leşkerî ji nêz ve dişopîne ji BasNûçe'yê re ragihand ku bajar bi giştî ketiye destê HSD'ê. Komê DAİŞ'ê di nava sivîlan de belav bûne. Li gor Mesto, DAİŞ'ê xwestiye ku ji bo derketina wan ji bajêr xwestine korîdorek bê vekirin da ku ji herêmê derkevin û biçin Reqqayê: "Hêzên HSD'ê jî diyar kirin ku ew ê korîdorekê vekin û bila derkevin. Ji bo ku sivîl neyên kuştin. Ji ber ku DAİŞ sivîlan weke mertalên zindî bikar tîne. Weke din jî bajarê Minbîcê bajarekî dîrokî û kevnare ye. HSD û hevpeymana navdewletî ragihandin ku ew dixwazin vî bajarî biparêzin û gotin bila Minbîc wek Kobanê wêran nebe. Ji ber wê yekê tê gotin ku ew ê korîdorekê vekin ku çekdarên DAİŞ'ê û derkevin û sivîl rizgar bikin. Heya niha nayê zanîn ku wê korîdor bê vekirin an na. Herwiha heta niha reva sivîlan ya ji herêmê didome."

**'Hejmara penaberan zêde dibe'**

Li gor Rojnameger Mesto li heremê ji bo penaberên ku ji herêmên şer direvin jî kampeke nû tê vekirin: "Hejmara penaberan her ku diçe zêde dibe. Derfetên rêveberiya xweser zêde tune ye. Derfetên dezgehên xêrxawziyê yên li herêmê jî ne gelek in. Lêbelê li gor derfetên heyî penaber tên hembêzkirin. Beşek ji koçberan derbas dibin û beşek jî derbasî kampa Rûbar û kampa nû Şehba dibin."

**'Kurdên sivîl dîl digirin'**

Amîna Mesto ragihand li Minbîcê leşkerên Meclîsê korîdorek bo sivîlan vekirine û wiha got: "Li Babê jî komkûjî, girtin çêdibin, reva xelkê ber bi Efrînê berdewam dike. Xelk ji mirinê direvin. DAİŞ"î bi taybet kurdan dîl digirin. Heta niha 2 hezar sivîl dîl girtine ku piraniya wan ciwan in. Nayê zanîn ku DAİŞ van kesan bi ku ve dibe. DAİŞ naxwaze sivîl ji herêmê derkevin. Yên ku tên jî bi kaçaxî tên. Pere didin kaçaxciyan ku xwe rizgar dikin û derbasî deverên bin destê HSD'ê dibin."

**'Niqaşên destûrê berdewam in'**

Mesto li ser amadekariyên ji bo Destûra federasyona Rojava jî ragihand ku ji bo destûrê rojên Sêşem û Çarşemê civîn hatin lidarxistin û hemû sazî û nûnerên herêma xweser di civînê de amade bûn: "Niqaşên derbarê destûrê de berdewam dikin. Civîna yekem bi nûnerên Xweseriya Demokratîk re kirin. Hin rexne jî hene li aliyê ziman de, ji aliyê temsîlkirinê de û hin xalên din de. Roja Çarşemê jî bi nûnerên herêma Şehba re niqaş hatin kirin. Rêveberiya Xweser û ENKS bûne du alî. Divê herdu alî bigihijin nêrîneke yek, ji bo berjewendiyên xelkê herêmê ev yek lazim e."

**Rojnamevan Bilo: Pêwendiya komên DIAŞ'ê ji hev qût bûye**

Rojnameger Mustafa Balî jî da zanîn ku gelek taxên girîng ê bajêr hatine kontrolkirin û wiha pê de çû: "Pêşdeçûnek mezin heye û gelek taxên stratejîk hatine girtin. Cihê ku tên naskirin û bandorên manevî li ser DAİŞ'ê hene ji destê wan derktin. Ew rewş ser moralê şervanên Meclîsa Minbîcê de bandorek baş kir. Nexweşxaneya mezin ya bajêr û derdora wê ji destê DAİŞ'ê hatin rizgarkirin. Ji wê zêdetir em dikarin bêjin bajar parçe bû, Endamên DAİŞ'ê ji hev qûtbûnê, li milekî wan aliyê rojavayê bajar, aliyê din ji rojhelatê bajar maye. Leşkerên Meclîsa Minbîce wan ji hev qût kirin. Li gor agahiyên Meclîsa Minbîcê kuştiyên DAİŞ'ê gelek in. Bajar ji %60'î hatiye rizgarkirin. "



# ZİMANGEH



Abdullah Kıran

Di vê rêzenivîsa xwe de emê zêdetir cih bidin tehegên bi yasa, makezagon, dadgeh û dadgehkirinê ve girêdayî û rawe bikin.

**Makezagon:** Anayasa (Constitution): Rêbazavahî; ya ku awayê desthilatiya dewletekê kifş dike, têkiliya hêzên dadî, rêvebirî û dadbarî ji hev zelal dike û çarçova mafên hemwelatiyan nîşan dide. Qanûna Bingehîn, Makeqanûn, Yasaya Bingehî. Bi gotineke din, metnê dadî yê ku çarçove û têkiliya laşên (organên) bingehî yên dewletê yên bi hev re kifş dike, di derbarê pêkhatina desthilatiya siyasî de agahdariyê dide, sînorê maf û berpirsiyariyên kes û saziyan ê bi dewletê re dike pergalekê. Ji rêbazavahiya a ku guherîna wê hêsan e re rêbazavahiya vekişêr (flexsible), ji ya ku guherîna wê dijwar e re rêbazavahiya sexîn (rijît) tê gotin. Li hin dewletên dinyayê rêbazavahiya nivîskî tune; mesela dewletên wek Îngilistan, Zelanda Nû û Îsraîlê.

**Dadgeha Mahezagonê: Anayasa Mahkemesi (Constitutional Court):** Dadgeha Rêbazavahî; dadgeha ku li rêbaz, destûrname û biryarnameyên ku ji alî meclisê ve tên derxistin dinêre û yên ku bi rêbazavahiyê re dijber in bi şûn ve dişîne; Dadgeha Berz. Dadgeha Rêbazavahî bi navê Dadgeha Berz li dozên wezîr, serdozger û endamên dadgehên bilind jî dinêre û biryarên wê nayên nûkirin, xerakirin an ji nû ve dozkirin.

**Monarşiya makezagonî: Anayasal monarşi (Constitutional Monarchy):** Monarşiya Rêbazwarî; sîstema siyasî ya ku padîşah an şahbanû bi awayê sembolîk (an wek reşûpêş) hene, belê desthilatiya rastîn di destê serokên siyasî de ye.

**Rêbazdanî: Yasama (Legislation):**Maf û desthilatiya rêbazçêkirinî. Meclisa ku di pirsên neteweyî an navneteweyî de rêbazên girêdar çêdike, mafê guhartin an betalkirina rêbazan di destê wê de ye. Rêbazdanî, bi dadbarî û rêvebiriyê re sê lingên desthilatiyê pêk tîne.

**Mînak:** Li welatên pêşketî, tene rêbazdanî dikare rêbazên nû çeke.

**Rêvebirî:** Yürütme (Execution) 1) Karê bicihanîna tiştekî. 2) Ji karên dewletê, bicihanîna rêbazên ku ji alî rêbazdaniyê ve hatine amadekirin. 3) Bicihanîna her cûre karên burokratîk. 4) Di rêxistinekê de hemû karên ku ji alî kesên desthilatdar ve tên kirin.

**Mînak:** Gellek mixabin ku îro li welatê me rêvebirî karen xwe baş pêk nayne; loma arîşeyeke rêvebirî heye.

**Dadbarî:** Yargı (Judiciary/Judgement) 1) Biryara ku çêbariyeke (nitelik) şaş an rast dihewîne. 2) Şaxê dadbariyê yê hikûmetê. Şaxê ku edaletê pêk tîne û rêbazên ku ji alî rêbazdaniyê ve hatine deranîn tîne cih. 3) Biryara dawî an encamî ya li ser mijarekê.

**Mînak:** Divê dadbarî serbixwe be û ne di bin emrên desthilatiyê de be.

**Dadkar:** Yargıç (Judge) Kesê ku bi karê bicihanîna rêbazê û edaletê re bilî ye. Kesê ku li dozên kesan ên li hember hev û li dozên kesan ên li hember dewletê dinêre û çareseriyekê tîne.

**Mînak:** Divê dadkar berî tiştî delîlan bistîne ber çav û biryara xwe bide.

**Dadbarî: Yargılama (Judgment):** Guhdarkirina du kesên ku hatine hember hev û biryar dayin; muhakeme.

**Mînak:** Hewcedariya me bi dadbariyek zelal heye.

**Dadbarkirin: Yargılamak (Hear):** 1) Bi guhdarîkirina dozdar (davacı) û dozbar(davalı) gihîştina encamekê. 2) Di derbarê kes an tiştekî de bîr û raya xwe anîna ziman.

Di zimanê me de, ji zarayê soranî peyva "darizandinê" bi wateya "yargılamak" a tirkî tê xebatindin. Bi ya min gotina "dadbarkirinê" hê rast û li cih e. Em dizanin ku di kurdî de "dad," bi wateya "adalet" û "huqûqê" ye. Çaxê me got " dadbarî," hingê mirov dikare fêm bike ku "barek" ango "kirin û spartineke" dadî çêbûye. Ango dezgeha dadî, ceza an barek daniye ser mile kes an avahiyekê.

***Not: Ji bo rexne, gazin, lome û pêşniyazên xwe ji min re binivîsin:***
***29abdullah@gmail.com***

BasNûçe 19 - 24 Tîrmeh 2016

# Fûtbol tena fûtbol nîyo!



Hebûn Okçû

Seke yeno zanayîş emser dinya de çend turnuvayê fûtbolî yê muhîm virazîyayî. Yew te ra Kupaya Amerîka bîye ke mîyanê 4-27 hezîrane 2016'an de mabeynê şîyês dewletan de kay bîye û peynî de Şîlî qezenc kerd. Yew zî Kupaya Ewropa ya ke mîyanê 10 hezîrane-10 temmuze 2016'an de mabeynê vîst û çar dewletan de kay bena û hema dewam kena. Seba ke erdê Tirkîye ra Trakya yew parçeyê Ewropa hesibîyeno, coka taximê milî yê fûtbolî yê Tirkîya zî bi heyecanêko zêde beşdarê Kupaya Ewropa bi la leze eleme bi û ci ra vejîya. Hewesê nasyonalîstanê tirkan qursaxê înan de mend û vengê înan birîya.

Tu çîyêk nêeşkeno xo hertim sey xo muhafaza bikero, muhaqeq zemanî dir bedelîyeno û vurîyeno. Kayê fûtbolî zî seke dest pêkerdo, sey xo nêmendo, zemanî dir vurîyayo û tena bi nameyê beşê sporî de mendo. La seraserê tarîxê xo de her wext bi hezaran, bi se hezaran û bi mîlyonan meraqdarê xo dorê xo de kom kerdê.

**"Fûtbol tena fûtbol nîyo!"**

Hetanî no wext, derheqê fûtbolî de çiqas kitab hameyê nuştiş, bellî nîyo. Labelê mîyanê nê kitaban ra ma zanê ke 200 hebî ziwananê xerîban ra tercumeye tirkî bîyê. Nê kitabanê turcumekerdeyan ra yew, ma eşkenê vacin "Seyahatnameyê Fûtbolî", nameyê eyê tercumebîyayî "Fûtbol Tena Fûtbol Nîyo!" yo. Nameyê nê kitabî yo orjînal "Football Against the Enemy". Nuştoxê nê kitabî, mîyanê new aşman de vîst û di welatan ra geyrayo û no kitab hazir kerdo. Nuştoxê nê kitabî Simon Kuper o. No merdim bi eslê xo yahudî yo û serra 1994 de ey no kitabê bi înglîzkî nuşto. Serra 1996 de zî tercumeyê tirkî bîyo û bi nuşteyê vateyê verên yê Fatih Terimî çap bîyo. Tercumeyê kitabî pêro pîya 216 rîpelî yo.

Fûtbol sey çîyêko masumane yeno nîşandayîş labelê eslê xo de wina nîyo, binê fûtbolî de tewir bi tewir hîle û entrîkayî estê. Eke merdimo biwazo hîle û entrîkayanê kayê fûtbolî bimuso, nê kitabî biwano faydeyê xo beno.

Simon Kuper, serra 1969'an de Uganda de dayîka xo ra bîyo. Labelê emrê xo Hollanda, Almaya, Amerîka û Înglîstan de vîyarnayo. Tewir bi tewir rojnameyan de, dergîyan de derheqê fûtbolî de epey wext nuşteyî nuştê. Unîversîteya Oxfordî de beşê Tarîx û Almankî de perwerde bîyo. Wexto ke no kitabê xo nuştêne, rojnameyê Financial Timesî rê zî nuşteyî şirawitêne.

**"Fûtbol eşkeno herb vejo yan şoriş bikero..."**

Kitabo "Fûtbol Tena Fûtbol Nîyo!" newês beşan ra hazir bîyo. Nuştox Simon Kuper derheqê kitabê xo da wina wano: "Mi no kitab semedê 'dinya de cayê fûtbolî' nuşto. Eger yew kay hetê bi mîlyaran kesî ra temaşe û teqîb bibo çîyêko muhîm o, o wext o kay nêbeno tena yew kay. Fûtbol tena fûtbol nîyo. Fûtbol eşkeno herb vejo yan zî şoriş bikero. Nê semedî ra fûtbol eleqeyê mafya û dîktatoran zî anceno xo ser."

Tena eleqeyê mafya û dîktatoran ney, eleqeyê her tewir merdiman anceno xo ser. Gelek merdimê sîyasetkarî yan merdimê wayîrê pereyan zî eleqeyê xo danê fûtbolî ser û derûdorê fûtbolî de hezar hawayî îşê tarî virazîyenê.

**Şîrketan û serokanê FIFA - UEFA bi dizdî mîyanê xo da pêkerd**

Ma raşte vacin, 1900'an ra nat fûtbol seke bîyo tabu, seke bîyo pere. Bîyo her reng ra pere, bîyo "pereyo reş." Kitabanê "Fûtbol A.Ş" û "Olimpiyatlar, Sahtekârlık ve Mafya" derheqê nê "pereyê reş", fûtbol û sîyasetî de entrîkayê ke virazyenê de gelêk melumatan danê.

Kitabê "Fûtbol A.Ş." de behsê fûtbol û fûtbolbazan beno. Nê fûtbol û fûtbolbazî senî bîyê markaya tîcarî senî bîyê reklam û her ca de behsê înan beno. Kitabê "Olîmpiyat, Sextekarî û Mafya" de zî behsê fûtbol, fûtbolbazan beno. Labelê zêde ra behsê serokanê FIFA û UEFA, behsê şîrketanê Cola, Adidas, Rebook, Nike beno. Nê şîrketî û serokê FIFA - UEFA bi dizdî mîyanê xo da senîn pêkerdo, senî înan gore fûtbol bîyo tena pere, behsê nê çîyan zî keno.

Fûtbol pere ra vêşêr bîyo alawê sîyasetî zî. Mesela, sîstemê lîberalîzmî, komunîzm û kapîtalîzmî de fûtbol çîyêko zaf muhîm o. Derheqê nê sîsteman û fûtbolî de kitabê "Çanda Fûtbolê" gelek agahiyanê girîng dano.

**(FOTO 1926 - Arsenal Manchester United)**

Serra 1926'an de mîyanê Arsenal û Manchester United (her di zî taximêkê Îngîlîstanî yê) de, hema ke maç dest pênêkerdbi, weçînayîşê top û qele bîyêne. Gama ke weçînayîş bîyêne, rojnamegeranê fotografantoxîye no fotograf antibi. Badê cu no fotograf bi meşhur û bi sembolê fûtbolî modern.

Nê fotografî de di fûtbolbazî û hakem, seke tope çîyêko muqedes û bimbarek a, wezîyetê secdeyî de ewnîyenê tope ra. Temaşekerdoxê ke hameyê stad, ê zî seke stad yew cayê îbadetî bo wina bêveng vindertê. Êyê ke keyeyê xo de, êyê ke qehwexaneyan de, dikananê xo da televîzyon û radyoyan ra maç teqîb kenê, ê zî bi nê hîsîyatî wina bêveng mendê.

Nika roja ewroyî de di çî estê ke însanan meşgul kenê. Nînan ra yew pere yo, yew zî fûtbol o. Eger ma bieşkên nê di çîyanê muhîman mîyanê însanan ra vecin, o wext îhtîmalêko pîl, heyat semedê însanan go zehmet bo. Çunkî hewtserre ra hetanî hewtayserre zafê însanan, zaf merdimî mîyanê xo de tena eşkenê derheqê pere û fûtbolî de qisey bikerê.

**Rojawanî fikr û mîsyonê xo fûtbolî ser o tetbîq kenê**

Fûtbolo ke binê tesîrê hegemonyaya Rojawanî de aver şîyo, netîce şeklê xo yê ewroyî girewto. Dewletê rojawanî fûtbolî ser o fikrê xo, mîsyonê xo danê tetbîq kenê. Fûtbol nê warê tetbîqkerdişê îqtîdarî de cayêko zaf muhîm gêno.

Simon Kuper kitabê xo de behsê yew rojnamegerê amerîkanij û kesêkê haîtijî keno. Mîyanê înan de yew diyalogo winasî virazyeno: "Hamnanê 1994'î de rojnameger, yew haîtîjî ra perseno, vano 'To gore kamcîn zêde muhîm o? Taximê fûtbolî yê Brezîlya qezenc bikero yan zî Amerîka welatê şima îşgal bikero?' Haîtij wina cewabê rojnamegerî dano, vano: "Ma her roje vêşan ê. Zaf derdê ma esto. Şarê Amerîka her roje vanê ma go welatê şima go îşgal bikerin. Labelê turnuvaya Kupaya Dinya çar serran ra reyêke virazîyena."

> Fûtbol, nika mîyanê dewletan de, mîyanê kluban de, mîyanê miletan de yan zî mîyanê grubanê etnîkî de bîyo hawayê xo îfadekerdişî, xo dayîş qabulkerdişî û xo dayîş şinasnayîşî. Ewro fûtbol bîyo sey kayê gladyetoran, fûtbolbazî zî bîyê gladyatorê modernî, sehaya fûtbolî yanî stadyûmî zî bîyê cayê kayê nê gladyetoran.

Seserre 20'an de fûtbol sporêko zef populer bi û nika her ca de, her kesî rê bîyo sey yew fabrîka. Dewletî pê fûtbolî hîsê mîlî zî îstîsmar benê û na çarçewa de pereyêko muhîm top kenê.

Derheqê sporî de yew perse zaf yeno persayîş. Vanê; "Çi semed ra seserre ma de fûtbol bîyo kayê tewr populer?" Cewabê na perse wina yeno dayîş: Fûtbol kayêko zaf basît o, belkî zî na basîtî ya ke fûtbolî kena balkêş. Însanîyetî çiqas bibo erjane go meşgaleyê înan zî hende bibo basît.

Fûtbol yeno manaya "topa lingan" na manayêka başe nîya. Welatê fûtbolî Înglîstan de, verê cû, seserra 15'an de, fûtbolbazîye hameyne manaya merdimê sextekarî, merdimê bêîhtîbarî. Mesela, nuştoxê kayanê tîyatroyî William Shakespeare, kayê xo bi nameyê "Mîr Lear" de yew kaykerdoxê ey vano "Fûtbolbazo tembelo pîs!" (You base, football player!) No vatiş kovar û rojnamayanê sporî yê ê wextî de zî nusîyayo.

Fûtbol, nika mîyanê dewletan de, mîyanê kluban de, mîyanê miletan de yan zî mîyanê grubanê etnîkan de bîyo hawayê xoîfadekerdişî, xo dayîş qabulkerdişî û xo dayîş şinasnayîşî. Ewro fûtbol bîyo sey kayê gladyetoran, fûtbolbazî zî bîyê gladyatorê modernî, sehaya fûtbolî yanî stadyûmî zî bîyê cayê kayê nê gladyetoran.

Şorişgêro namdar Che Guevarayî jî derheqê fûtbolî de vato; "Fûtbol tena yew kayo basît nîyo, fûtbol sîlehê şorişî yo." Nê vatişî ra zî yeno fehmkerdiş ke fûtbol heqîqeten tena fûtbol nîyo.

BasNûçe 19 - 24 Tîrmeh 2016



## Siyaseta Bakûr

# Penaber ji bo xerakirina demografyayê tên bikaranîn

M. Emin KAN



Li Tirkiyeyê mafdana welatîbûnê bo penaberên Sûriyê demeke bûye xala sereke ya siyaset û medyayê. Serokkomarê Tirkiyê Recep Tayyip Erdoğan piştî ku ji civîna NATO'yê vegeriya eşkere kir ku ew ê mafê welatîbûnê bidin penaberên Sûriyê û herwiha ew ê kesên bi kêrhatî û qalîfe jî weke karmend îstîhdam bikin. Erdoğan eşkere kir ku ewê penaberan di avahiyên TOKİ'yê de bicîh bikin. Li gor daneyan fermî 3 milyon penaberên Sûriyê xwe spartine Tirkiyeyê.

Rojnameger û nivîskarên nêzîkî hikûmetê eşkere dikin ku ew ê penaber li bajarên kurdan ê di encama şer û pevçûnên navbera PKK'ê û dewletê de valabûne, bêne bicihkirin.

Wezîrê Karê Navxweyî Efkan Ala jî li ser mijarê got ku penaberên kêrhatî wê mafê welatîbûna Tikiyeyê bistînin. Herwiha wezîr eşkere kir ku ew ê tirkmenên Ahiskayê jî bikin welatiyê Tirkiyê. Beriya mehekê nêzîkî 200 malbatên ji Ahiskayê ku ji Ukrayna hatinûn anîn li bajarê Bedlîsê hatibûn bicihkirin.

Hevserokê Partiya Demokratik a Gelan (HDP) Selahattin Demirtaş jî piştevaniya dana mafê welatiyê bo penaberên Sûriyê ragehand. Demirtaş amaje bi wê yekê kir ku asayî ye ku nasnameya Tirkiyê ji bo penaberên Sûriyê yên li Tirkiyê bê dayîn, bi taybet ewên xwedê karên baş û zîrek in.

Partiya Komarî ya Tirkiyê (CHP) jî bi tundî li dijî wê yekê ye. CHP îddîa dike ku ev mafdayîn ji bo vergirtina dengê penaberan e.

Partiyên siyasî yên Kurdistanê jî li dijî wê biryarê bertekan nîşan didin û eşkere kirin ku bicihkirina penaberêa li Bakûr ew ê demografiyê xirabbike. Di derbarê mijarê de siyasetmedarên Bakûrê Kurdistanê ji BasNûçe'yê re axivîn.

**Serokê PDK-T'ê Kardaş: Li Sûrê, li Cizîrê wê cihekî bidine wan**

Serokkomar dibêje, 'em ê wan di TOKİ'yan da bi cîh bikin! Niyeta wî çi dibe bila bibe ji aliyê penabera ku welatiyê bidin wan tiştek baş e, belkî siyasetvanên me yên ku rexne bikin hene, lê ji bo jiyana penabera ew yek baş e. Ya din jî wê têkiliyê me û wan jî wê çêtir bi hev û din re çê bibe, dan û stendinê me jî wê çê bibin. Wê ew jî di fikr û ramanên xwe de bêhtir azad bin. Mihacir bûne û wê di jiyana xwe de jî feydê bibînin. Divê ji bin çadiran xilas bibin. Heke ku dewlet dibêje 'ez dewleta sosyal im û ez li tevahiya dinyayê penaberan qebûl dikim û heqê wan ê civakî, maaş û heqê rûniştinê didim wan.' Ez bi xwe wî tişti qenc dibînim. Ji xwe em bixwazin ne xwazin dewletê ahiskayiyan anîn û li Bedlîsê bicîh kir. Berî niha bi salan koçberan anîn li wan deveran bicih kirin. Kê karibû tiştek bêje. Ew bi piranî kurdên Sûriyê ne, bila ew jî li deverekî bi cîh bibin. Ew ji tirkmenan çêtirin. Li Sûrê dibe, li Cizîrê dibe helbet wê cihekî bidine wan. Dema ku em bê dewlet bin wê wisa be, yên ku rexne dikin bila pêşiyê mafê dewletbûna xwe biparêzin, wextê ku em ne dewlet bin, xaka me ne di destê me de be, di destê dagirkeran de be, wê wiha be.

**Serokê PSK'ê Tek: Niyet ne paqij e**

Penaberî tiştekî gelek zehmet e, em kurd derd, êş û zehmetî û penaberî çiye baş dizanin. Ji ber ku gelê kurd jî gelek cara bûye penaber. Ji Başûr çûne Bakûr, ji Bakûr çûne Rojhilat, bi koman çûne Ewropayê. Bi bîr û baweriya me her gavên ku ji bo baştirkirina rewşa penaberên Sûriyê li Tirkiyê bên avêtin em ê pê kêf xweş bibin. Jiyana wan bê rêkûpêkkirin, rewşa wan bê başkirin ew tiştekî baş e û em piştgiriyê lê dikin. Heke bi niyetekî xirab, bi niyetekî ne pak wan bînin li bajarên Bakûr bi cîh bikin ji bo asîmîlekirina kurdan û wekî kartekî bi kar bînin em li dijî wê yekê ne. Armanca Tirkiyê ne paqij e, ji ber ku dewlet gelek caran tiştên wisa kiriye. Tirkên Balkanan aniye li Kurdistanê bi cih kiriye û kurdan jî biriye aliyê Rojavayê Tirkiyeyê di nav tirkan de bi cih kiriye. Armanca wan jî ew bû ku kurdan asîmîle bikin, pêş li xebata azadîxwaziya gelê kurd bigrin. Heta niha eşkere bû ku ew siyaseta ne li ser esasê mirovahî, lê siyasetek qirêj e. Ne gihiştiye armanca xwe. Ne kurd asîmîle bûne ne jî ber li tevgera kurd hatiye girtin. Ji ber wê yekê jî banga me ji bo AKP'ê, ji dîrokê ders verbigre, tişten ku hatine ceribandin û encam negirtine dûbare neke û carek din neceribîne.

**Cihgirê Serokê PAK'ê Acar: Bila penaberan li rojavayê Tirkiyê bi cîh bikin**

Wek ku tê zanin polîtîkaya dewleta tirk demografiya Kurdistanê xira kiriye. Ji xwe gorî gotina wan 3 milyon penaber hene, ne ku ji penaberan hez dikin, an jî humanîstî difikirin ku wan qebûl dikin. Gelek însanên me penaber dibin. Gelê kurd jî penaber dibe, lê nakeve rojeva wan. Mesele xirakirina demografiya Kurdistanê ye. An jî di pêşerojê de çawa sed sal, dû sed sal berê gelê kurd bi zor û zehmetî sirgûn kiribûn îro jî dixwazin di nav demografiya Kurdistanê wana bi cîh bikin, ji bo asîmîlasyonê, ji bo ku wan li hemberê gelê kurd, di şer de bi kar bîne. Em ne li dijî însanên koçber in, lê dema ew bi awayeke sîstematîk û siyasî bên bikaranîn nabe. Li rojavayê Tirkiyeyê gelek li cihên vala hene, bila li wan li wir bicih bikin, çima Kurdistan? Demekî tirkên ahiskayî anîn, hinek afgan anîn û hwd. Em li hemberî vê siyasetê ne, çimkî ev siyaset ne ji bo nirxên însaniyetiyê ye. Ji bo van însanan li dijî kurdan bikarbînin dixwazin li vir bicih bikin.

**Serokê HAK-PAR'ê Karakoç: Em vê siyasetê rast nabînin**

Ew bûyer gelek balkêş e. Penaberên ji şer reviyane û hatine sînorên Tirkiyeyê û Tirkiye wan qebûl kiriye ew tiştekî mirovî bû. Mirov ji vê yekê re nikare tiştekî bêje û barê wî jî giran bû. Ew rewş tiştekî cûda ye. Welatîbûn tiştekî cûda ye ew biryarekî siyasî ye. Di wê mijarê de gelek hesab hene û bi yek ji van hesaban ew e ku wan li ser xaka Kurdistanê bi cih bikin. Bi vî awayî dixwazin demografiya bajarên Kurdistanê biguherin. Hêj zelal jî nîne wê çikas kes bibin welatî li ku derê bi cih bikin. Wek ku Saddam li ser Kerkûkê ev lîstîk lîstibû ku ji bo demografiya wê biguherîne. Penaberên ku niha li Tirkiyê ne, hindik in heke ew bibin welatî li ser axa Kurdistanê jî bi cih bibin. Em biryara welatibûna wan rast nabînin. Em ne li dijî tiştên mirovahî ne. Lê ev biryar ne biryarekî ji bo nirx û mafên mirovahiye ye, biryarek siyasî ye ku dixwazin demografiya bajarên me biguherînin.

**Serokê PDK-Bakûr Bucak: Penaberan bikar tînin**

Kurd jî gelek caran penaber bûn. Ez jî gelek salan penaber mam û ji welatînbûna Tirkiyeyê hatim avêtin. Ew tiştekî baş e ku penaber bibin welatî û rewşa wan baştir bibe. Mirov wê yekê fêm dike, lê li wê derê tiştek heye ku wîsa xuya dike ku li gor daxuyaniyê nivîskarên nêzikî Hikumetê ne ew siyaseta însanî ye. Wê penaberan li hemberê siyaset û milletê kurd û Kurdistanê bikar bînin. Yek ji wan xirakirina demografiya Bakûr e, wê piraniya wan li herêma me bi cîh bikin. Di salên berê de jî dewletê gelek penaberan anî li herêmê kurdan belav kir û bi cîh kir. Hikûmet ji destpêka damezrandina komara Tirkiye heta îro her tim ew guhartinê demografîk pêk aniye. Yanî sîcîla dewleta Tirkiye ne paqij e, di aliyekî de tişten mirovî dike, di aliyê din de jî wan estrumantalîze dike, yanî dike alet ji bo asîmîlekirina miletê kurd û guhertina nifûsa Bakûr. Em dibêjin divê wisa nebe. Penaberên Sûriye yên ku kurd in bila li wê derê bimînin, lê yên ku ne kurd in bila li Rojavayê Tirkiyeyê bi cîh bikin.

**Serokê ÖSP'ê Çiftyürek: Wê tesîr li Riha û Mêrdînê zêdetir be**

Em welatîbûna penaberên li Tirkiyê şaş dibînin. Em vê yekê ji bo xerakirina demografiya Kurdistanê dibînin. Erdoğan û AKP dixwaze bi kevirek sê çûkan daxînin. Yek hesabê wî li ser mesela kurd û Kurdistanê heye. Dixwaze demografiya Kurdistanê biguhere, hesabê hilbijartinê heye. Ji 3 milyon kesan 500 hezar kes bibin welatî wê demê di dengdayînê de AKP li ser wî hesaba dike. Tiştek din jî , Erdoğan digot; zedê zarokan çêkin, herî kêm sê zarok! Em dizanin Gelê Ewropa kal bûye, em bêjin 2 milyon ereb, nîv ji wan jî zarok in, wê Tirkiyê jî bi wan ciwantir bibe. Hesabê wê jî heye. Planê wan wisa ye. Şaşiyek mezin e, dive mirov li hemberî wan derkeve. Wê tesîra wê li Riha û Mêrdînê zêdetir çê bibe. Hesabê dewletê heye ku demografiya Kurdistanê biguherîne, lê qeneeta min ew e ku wê pirsgirêk derkevin holê.

**Sekreterê Azadî Zilan: Tirkiye ji bo sikûnetê alîkariya gelê Sûriye nekir**

Di brakujiya ku li Sûriye çêbû de tiliya Tirkiye heye. Em zanin ji bo sikûnetê alîkariya gelê Sûriye nekir. Herwiha wek ku em zanin li Bakûr di salên 90'an de ji 2 milyonan zêdetir kurdên me koçber bûn çûn metropolên Tirkiyê. Dû tişt ji wan hasil bûn. Gelê me yê koçber asîmîle bû, û li ser asayîşê tesîrek jî negatîf çêkir. Yên li aliyê Marmarayê dixebitin, Tirkiye ji wan îstîfade kir. Îro em dikarin bêjin mesele ya penaberên Sûriyê jî wisa ye. Dixwazin ji wan îstîfade bikin. Ji xwe ji wan heta niha jî îstîfade kirin. Dibejin ku TOKİ'yê hinek cihan amade kiriye, em ê li wan deveran bicih bikin. Ev yek wê demografiya Bakûr xira bike. Ji ber vê yekê em vê biryarê di cîh de nabînin. Em li hemberê hikûmeta Tirkiyê dibejin ne li hember penaberan. Penaber perîşan in, gelê kurd jî ji sed salan zêdetir koçberî û komkujî dinase. Divê em li hember siyaseta Enqerê dengê xwe bilind dikin.

